

## Dema rêwîtiya jiyanên demkî

**BIRÎNA** bêderman a Bakurê Kurdistanê, xebatkariya demkî ya cotkariyê dest pê kir. Ji zarokên 2 mehî bigirin heta pîrekên 80 salî ji hemû nifşan mirov di qaseyên qamyonan de derdikevin ser rêya kar. **RÛPEL-09**



## Kurdê Îstanbulî yê Verênî

**ÎSTANBUL** yew metropole dinya yo ke tede bi mîlyonan kurdî ciwîyenê. Tarîxê nê bajarî de rêçê kurdan resenê verê çend seserran. Ma ver bi tarîxê kurdanê Îstanbulî bikewê rayîr. **RÛPEL-10**



## Ez şagirtê gelê xwe me!

"Ez gel im. Lawê gel im û ez ji nava gel perwerde bûm, şagirtê gel im" Derwêş Serhediyê Hunermendê Kurd ku ev nêzî çil salan e kedeke mezin daye muzîka Kurdî hestên xwe bi vî awayî tîne zimên. **RÛPEL-14**



HEFTENAMEYA NÛÇEYÎ Û ŞIROVEYÎ
HEJMAR: 17
01 - 07 GULAN 2017
www.basnews.com



**SEROKWEZÎR NÊÇÎRVAN BARZANÎ LI TIRKIYÊ YE**

# KURDISTAN ÊDÎ AKTORÊ SEREKE YE

### BARZANÎ, BEŞDARÎ LÛTKEYA KONSEYA ATLANTÎKÊ BÛ

Serokwezîrê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî beşdarî Lûtkeya Konseya Atlantîk a Stenbolê bû. Beşdarbûna Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî di vê lûtkeyê de ji bo pozîsyon û rewşa Kurdistanê gelek girîng e.

### BARZANÎ Û ERDOĞAN CIVIYAN

Serokwezîrê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî piştî operasyonên hewayî yên Tirkiyê li ser Şengalê û krîza Kerkûkê bo cara yekem bi Erdoğan re civiya. Barzanî û Erdoğan bo pêşdebirin û bihêztirkirina pêwendiyan peyamên girîng dan.



**EKREM ÖNEN** R02
DYA, Rûsya, Tirkiye, Rojava û Başûr



**MURAD CÎWAN** R04
Talana Koşka Ahmed Xanê Helo Xanê Erdelanî



**HOŞENG OSÊ** R07
Hinek rexne û têbînî



**JAN DOST** R08
Aştî li ber nigê şerxwazan diçe



## BAROYÊN KURDISTANÊ: EM DIKARIN BO AŞTIYÊ BIBIN NAVBEYNKAR

Baroyên Bakurê Kurdistanê daxwaza sekinandina şer, ji nû ve destpêkirina hevdîtinên çareseriyê bo pirsa Kurdî kirin û ragihandin ku dikarin ji bo aşitiyê bibin navbeynkar. Serokê Baroya Wanê bersiva pirsên me da. 03



## LI HEMBER KURDÊN ELEWÎ KOKBIRA 1937-38AN

Di 1926'an de ji bo Dêrsimê planeke taybet hat amadekirin û piştî vê rojê kar û xebata asîmîlekirin û perçiqandina gelê Dêrsimê gor vê planê meşand. Piştre jî operasyonên qirkirinê destpê kirin. 05



**EKREM ÖNEN**

## DYA, Rûsya, Tirkiye, Rojava û Başûr

Bûyeren van çend rojen dawî li rojhilata nêzîk û bi taybet li Kurdistanê dibin, gelek balkêş û girîng in. Ji bo pirsa êrîşa Tirkiyeyê li ser Başûr û Rojavayê Kurdistanê û helwesta DYA û Rûsya baş bê fam kirin, pirsek girîng heye divê zelal bibe. Wê demê mirov dikare baş fam bike çi geopolîtîk li herêmê dimeşe. Ev pirs jî pirsa parastina asîmanê Sûriyê û Iraqê ye. Parastina asimanê Iraqê ji alî koalîsyona navnetewî a li dijî DAIŞê ku ji 38 welatan pêk tê. Tirkiyê jî di nav de ye, bi serokatîya DYA tê parastin. Her weha asîmanê Sûriyê jî, hinek ji alî vê koalîsyona asîmanê Iraqê dipareze hinek jî ji alî Rûsya Federal ve tê parastin. Herêma çiyayê Qereçok ji alî kaolîsyona navnetewî a ji 38 welatan pêk tê tê parastin. Tirkiye dema derba 15 Tîrmehê endamtiya xwe a di nav koalîsyonê de sekinand, wê demê kordînasyon di navbera Tirkî û Rûsya de dîrekt çêbû. Piştî Tirkiyê careke din vegeriya nava koalîsyonê êdî kordînasyona navbera Tirkiyê û Rûsya nema, kordinasyona bi Tirkiyê re jî bû perçekî ji a bi koalîsyona navnetewî re. Niha kordînasyon ji bo ewlekariya asîmanê Sûrî di navbera Rûsya û DYA de heye. DYA ne bes berpirsyarê Tirkiyeyê her weha ê Almanya, Belçîqa, Holanda û welatên din ê di nava koalîsyonê dene. Ji ber wê ye dema Tirkiye dibê me DYA û Rûsya agahdar kirine, Rûsya dibe wan pir zû DYA agahdar kirine ku Tirkiyê bisekinîne nehêle êrîşa bibe ser Kurdan. DYA dibe wext teng bûye ku bikaribin Tirkiyê bisekinînin.

Çima niha Şingal û Qereçok?

Em dikarin bêjin êrîşên Tirkiyê niha li ser Şingal û Qereçok ji ber çend faktoran bi hevreye, lê faktora esasî statuya Kurdan a li Rojhilata nêzîk e. Tirkiye bi van êrîşê ser Kurdan dixwaze nîşan bide pirsa statuya Kurdan xeta sore ji bo wan. Lê Tirkiyê baş fam kiriye ew nikare rê li ber statuya Kurdan bigre bes bi van êrîşan dixwaze destkeftiyên Kurdan mînîmûm bike. Bi kurtî dixwaze bi DYA û Rûsya re li ser desthilatiya Kurdan a paşerojê bazarê bike. Serokkomarê Tirkiyê Erdoğan di 3yê gulanê de li bajarê Rûsya Soçî bi serokkomarê Rûsya Federal V.Pûtîn re, her weha di nêzîk de diçe DYA bi serokê DYA Tramp re hevdîtinê pêk tîne. Beriya van her du serdanê xwe, ev êrîşa li ser Şingal û Qereçok ne tesaduf in Şingal pir hindik girîngiya wê diyare lê Qereçok nû ye, yek jê nêzîkî hudûdê bakurê Kurdistanê ye her weha ne durî Şingalê ye li çiyayê Qereçok çend radyo weşanê dikin her weha dema bûyerên Cizîr û Nisêbînê gelek mirov di ser Qereçok re derbasî Cizîr û Nisêbînê bûn. Erdoğan bi vê êrîşê sînyalek da DYA û Rûsya, ew ji hev baş fam dikin. Her weha Erdoğan wek serdema Mustefa Kemal û piştî şerê cîhanê yê duyemîn dixwazê li ser nakokiyê DYA û Rusya bilîze. Lê Erdoğan bes di tiştekî de şaşe raste nakokî di navbera DYA û Rûsya de hene, lê ev nakokî ne weke yê serdema Mustefa Kemal û piştî şerê cihanê yê duyemînin îdeolojîkin. Nakokiyên niha ne ewqas ku Tirkiyê karibe li ser wan bilîze. Raste DYA niha dixwaze bi Tirkan re li hev bên û Tirka hinekî ji Rûsya bi dûrxe her weha Rûsya jî pragmatîk bi Tirkan re dilîzin ku Tirka ji NATO dûrxe. Ev tişten siyasî rastin lê çiqas rastiya meselê ye ne diyare? Tişta diyar ew e niha herêm û cîhan li ber guhertinekê ye ku nîzamek nû li cîhanê bê avakirin. Tişta kuTirkiyê jê bi tirse eve ku nizane di vê nizama nû de cihê wan li ku ye û wê ev Tirkiya îro heye wê karibin bi parêzin an na? Tirkiye bi vê tevgera xwe ji DYA û Rûsya re dibê hûn Tirkiya îro di nîzama nû de ji me re bihêlin em tiştekî naxwazin, lê diyare ne DYA ne jî Rûsya tu garantiye nade wan, hemû metirsiya wan ev e. Ji xwe Tirkiyê her roj dibên hêzên mezin wek çawa di tifaqa Sykes Pickot de bi dizî li hev kirin, niha jî Rûsya û DYA bi dizî dikarin li hev bikin. Tişta niha rê li ber Tirkiyê şaş kirîye ev e. Pirsek esasî ku niha di rojevê de ye ku xwedêgiravî çima DYA Tirkiyê ne sekinand. Bi ya min yek jê hesabên geopolîtîk û konjukturelin ya duda heta niha Tramp li DYA hîn baş ne rûniştiye. Protsesa dewrstendina Obama ji Bush 8 meha dewam kir a dewrstendina Tramp ji Obama wê çiqas dewam bike ne diyare. Ji xwe beyanê berpirsên DYA ne yekdeng bû ew işareta heta niha Tramp bitemamî dewrteslîm ne girtiye. Her weha Rûsya jî beyana wan ne pir hişke. Ev bi ya min konjukturele û van êrîşana ji stratejiya xwe re taluke nabînin. Dema taluke be weke em dizanin beriya demekê dema operasyona Tirkiyê a Minbîçê DYA û Rûsya çawa ew sekinandin û heta mecbûr kirin ji El Bab jî derkevin.

Divê Kurd çi bikin?

Kurd divê hiç panîk nebin û nêyên provakasyona, têkiliyên xwe wek berê bi DYA û Rûsya re dewam bikin. Ji xwe nakokiyên Tirkiyê bi DYA û Rûsya re pirsa Kurd e. Tirkiyê ji DYA û Rûsya re dibê hûn lazime dev ji piştgirîya Kurdan berdin. Niha ew nikarin mudaxeleyî Kurdan bikin bes dixwazin provakasyona bi destên hinekî din bikin. Diyare DYA û Rûsya dixwaze rê li ber wan provakasyonan jî bigrin, ji ber wê pir acizin. Pirsa hebûna PKK li Başûr û Rojavayê Kurdistanê pirsgirêke ji bo herdû perçan, bes ev pirs ji PKK mestire û ji ber wê jî lazime ne li Başûr ne jî li Rojava Kurd neyên provakasyona û heta ji wan bê xwe ji şerekî bi PKK re durxin. Bi taybet Hikumeta Herêma Kurdistanê divê pirsa PKK ne bi PKK re, bi riya DYA û Rûsya çareser bike. DYA û Rûsya ji her kesî bêhtir dizanin ev pirs li Anqerê û Tehranê çareser dibe. Dewletên Kurdistan perçekirine ji bo DYA û Rûsya li herêmê ne ew raste rast newêrin mudaxeleyî Kurdan bikin, ji ber wê lê dixebitin ji hundir de provakasyona bikin da ku Kurda meşxul bikin da Kurd ji armancên xwe yî desthilatiyê bi durkevin. Heger Kurd siyaseteke pragmatîk netewî bimeşînin û neyên provakasyona fereca xêrê nêzîk e.

Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî li Tirkiyê ye;

# Hikûmeta Kurdistanê êdî aktorê sereke ye



**DELAL DIJWAR**

Li Stenbolê nûnerên welatan li ser mijarên aborî, enerjî, vebêrhênan û polîtîkaya derve, di Lûtkeya Konseya Atlantîk ya Stenbolê ku îsal ya 8'mîn pêk hat de hatin ba hev. Lûtke ji aliyê Konseya Atlantîk ve ku navenda wê li DY tê çêkirin. Jibilî rayedar û berpirsên şîrketên enerjiyê yên mezin, Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî jî beşdarî Lûtkeya Konseya Atlantîk a Stenbolê 2017'an bû. Beşdarbûna Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî di vê lûtkeyê de ji bo pozîsyon û rewşa Kurdistanê gelek girîng e. Her wiha di lûtkeyê de Serokwezîrê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî û Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan li rex hev rûniştin û vê yekê bal kişand.

Serokwezîrê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî piştî operasyonên hewayî yên Tirkiyê ku di 25'ê Nîsanê de li ser Şengal û Rojava pêk hatin, bo cara yekem hat Tirkiyê û bi Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan re hevdîtinek pêk anîn. Tirkiyê li dijî bilindkirina Ala Kurdistanê li Kerkûkê bertek nîşan dabû, lêbelê Hikûmeta Kurdistanê bersiva van bertekan nedabû. Herçiqas ji ber referandûma destûrê ya li Tirkiyê, Herêma Kurdistanê bersiva gotinên Erdoğan nedabe jî, pêwendiyên her du aliyan sist bûbûn. Lêbelê Barzanî û Erdoğan piştî krîza Kerkûkê û operasyona Şengalê, ji bo pêşdebirin û bihêztirkirina pêwendiyên her du aliyan, peyamên girîng dan.

**"Divê PKK ji Şengalê derkeve"**

Nêçîrvan Barzanî û Erdoğan piştî hevdîtina ku di 28'ê Nîsanê li Koşka Yıldız Mabeynê pêk hat de, nemaze jî li ser mijara derketina PKK ji Şengalê peyam dan. Erdoğan dubare xemgîniya xwe ji bo ku di encama operasyonên li ser Şengalê de hêzên Pêşmerge jî ziyanên canî dane anî ziman û aşkere kir ku bûyer bi temamî bi şaşî pêk hatiye û gelek xemgîn e. Erdoğan her wiha dubare kir ku hebûn û mayîna PKK ya li Şengalê nayê qebûlkirin û diyar kir ku divê PKK demildest ji Şengalê derkeve. Serokwezîr Barzanî jî ragihand ku ew hêvî dikin PKK Şengalê biterikîne.

**"Paşgûhkirina Herêma Kurdistanê paş de ma"**

Şêwirmenda Ragihandinê ya Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî, Sena Shafik jî destnîşan kir ku pêkhatine hevdîtina her du aliyan piştî operasyona Şengalê û bûyerên dawîn, xwedî girîngiyeke mezin e. Sena Shafik radigihîne ku di hevdîtinê de her çiqas pêşdebirina pêwendiyên aborî û siyasî yên di navbera her du aliyan de hatibin rojevê jî, operasyona Tirkiyê ya li dijî Şengalê mijara sereke ya hevdîtinê bû.

Sena Shafik diyar dike ku Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî, ji bilî rûniştina ligel Serokkomar Erdoğan, digel rayedar û berpirsên gelek welatan jî pêwendî daniye û ev dîplomasî bo Herêma Kurdistanê gelek girîng e. Shafik wiha dewam dike: "Di van têkilî û gotûbêjan de, rola Herêma Kurdistanê ya li şerê


Avni Özgürel

li dijî DAIŞê de û rewşa siyasî ya piştî DAIŞê li herêmê û girîngiya Herêma Kurdistanê hatin axiftin. Ev jî nîşana wê yekê ne ku Herêma Kurdistanê di herêman de aktorekî sereke ye û di geşadanên siyasî yên rû didin de xwedî roleke sereke ye. Ango ew serdema ku Herêma Kurdistanê dihat paşgûhkirin û bi awayî pêngavên siyasî dihatin avêtin derbas bû. Êdî divê her dewlet rola Herêma Kurdistanê li ber çavan bigire."

Ji bo ku Herêma Kurdistanê krîzên siyasî û aborî derbas bike, hayîdarbûna ji pêngavên Kurdistanê û piştgirîdana civaka navdewletî bo Kurdistanê ev lûtke xwedî girîngiyeke mezin e. Shefik li ser vê mijarê jî van tîne ziman: "Rast e ku sedema mezin û sereke ya rûdana qeyrana aborî ya li herêmê, şerê li dijî DAIŞê ye, lêbelê hewldanên PKK û Goranê yên bo jinavbirina aramî û îstîqrara Herêma Kurdistanê ku bi destê hin welatên din tên kirin, di vir de xwedî bandir in. Hevdîtin û dîplomasiya di vê lûtkeyê de ji bo gavavêtina jinavbirina qeyranên siyasî û aborî û piştgirîdana civaka navdewletî bo Kurdistanê, gelek girîng in. Ji bo ku rola Herêma Kurdistanê ya di şerê li dijî DAIŞê de, vegotin û zanîna berdelên ku Kurdistanê bo hemû mirovahiyê dane, di vê serdema ku nexşe û hevsengiyên li cîhan û herêmê de digûherin de, lûtkeyên bi vî awayî gelek karîger û girîng in. Ji bo wê yekê di vê heyama ku amadekarî û xebatên ji bo pêkanîna referandûma serxwebûna Kurdistanê tên rêvebirin, divê dîplomasî û gotûbêjin li gel welatan berdewam bikin.

Shafik di bareyên hebûna PKKê li Şengalê û operasyona hewayî ya Tirkiyê jî de nêrînên xwe tîne ziman û pê de diçe: "Hebûna leşkerî ya PKKê li Herêma Kurdistanê li pêşiya avakirina îstîkrara siyasî û aramiya herêmê astengiya herî mezin e. Hêviya her kesê li Kurdistanê ew e ku her alî berjewendiyên xwe yên partî û rêxistinî deyne aliyekî û berjewendiyên Kurdistanê li ber çavan bigire."

### "Tirkiye, naxwaze tu hêzên girêdayî Barzanî zirarê bibînin"

Rojnameger û Nîvîskar Avni Özgürel, di derbarê hevdîtina Erdoğan û Serokwezîr Barzanî de ji Basê re axivî. Özgürel got, "Haya Tirkiye ji hemû armancên Barzanî heye." Özgürel her wiha li ser helwesta Tirkiyê ya li hember serxwebûna Herêma Kurdistanê jî diyar kir ku Tirkiye hinekî dûr disekine û wiha pê de çû: "Ez hevdîtina Erdoğan û Barzanî gelek erênî û hêja dibînim. Tirkiye di her warî de bi Herêma Kurdistanê re di nava hevkarî û piştevaniyê de ye. Taybetî jî encamdana vê hevdîtinê piştî geşedan û bûyerên dawîn, gelek girîng e. Tikriye di haya hemû armancên Birêz Barzanî de ye. Ez helwesta Tirkiyê ya li hember serxwebûnê jî hinekî weke ku xwe dûr dixe, dibînim. Geşedan û rûdanên dawîn yên navçê wê bi mutabakat û gûftûgoyên Tirkiyê û Hikûmeta Kurdistanê çareser bibin. Tirkiye naxwaze tu hêzeke ku girêdayî Barzanî ye zirarê bibîne."

**Tirkiye, dê ji bo refrandûma serxwebûnê çi bêje?**

Li hêla din, biryara encamdana referandûma serxwebûnê ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî di rojevê de ye. Ji bo rêvebirina hevdîtin û gotûbêjên referandûma serxwebûnê şandeyek hatibû avakirin. Serdana yekem ya vê şandê dê bo Îranê be. Lêbelê nayê zanîn ku bi welatên din re jî, dê heman şande hevdîtinan bîne an jî dê yeke din bê avakirin. Di rûniştina Barzanî û Erdoğan de, herçiqas mijara sereke operasyona li dijî Şengalê be jî, tê gotin ku serxwebûna Kurdistanê jî di hevdîtinê de hatiye gotûbêjkirin. Tirkiyê heta niha di derbarê referandûma serxwebûna Herêma Kurdistanê de nêrîn û helwesta xwe zelal nekiriye, lêbelê gor agahiyên gihiştine destê me di hevdîtînê de serxwebûna Herêma Kurdistanê jî hatiye rojevê û axaftin li ser hatine kirin.



## Baroyên Kurdistanê:

# Em dikarin bo aştiyê bibin navbeynkar

YAĞMUR ÇETİN



**We aşkere kiriye ku hûn dikarin wek baro bibin 'navbeynkar' Ber destê we rê û rêbazeke çawa heye?**

Rast e, ji bo ku em rê û rêbazeke rasteqîn bi dest bixin divê em pêşiyê tespîta pirsgirêkê bikin. Pirsgirêk ji bi rastî gelek aşkere û zelal e. Meselaya Kurd li vî welatî pirseke sedsalî ye. Ger ev pirs baş neyê binav kirin wê demê ne pêkan e ku çareseriyeke rast jî çêbe. Divê pêşiyê binavkirin, paşê rê û rêbazên rasteqîn. Ji bo ku meselaya Kurd a sedsalî bê axaftin û bê çareserkirin rêbazeke demokratîk nehat bikaranîn. Mesele yan rast nehat binavkirin an jî ku rast hate binavkirin jî ne bi rê û rêbazên rasteqîn lê bi bi polîtîkayên ewlehiyê xwestin çareserbikin.

**We got 'her carî pêvojoyeke bêsûd heye'. Yanê li her du aliyan de jî hewla mijûlkirinê hebû?**

Em nebêjin her du alî. Di dawiya 30-40 saliya vê meseleyê binêrin, dewlet û rêxistin wek teref têne nîşan kirin. Divê bi nêrîneke berfireh lê bê mêze kirin. Meselaya Kurd meseleyeke sereke ya sedsalî ye. Dema ku em salên 70'î, 80î û 90'î dinêrin, pirsa Kurd bi vî şiklî hat binav kirin; "Kurd li vî welatî hene. Kurd realîtek e." ev binavkirin ne binavkirineke rasteqîn e binavkirineke polîtîk e. Yek jî gelê qedîm yê vî welatî Kurd in. Nêrîneke ku qey Kurd paşê hatine vî welatî, binavkirin ne rast û rasteqîn e. Ger binavkirineke rasteqîn were kirin wê demê divê hemû gelên li Anatolyayê û Kurdistanê weke ku gelên bi cî bûyî û qedîm bê binavkirin. Divê mafên sereke yên van gelên ku weke rastiya vî welatî têne qebûlkirin jî bêne qebûlkirin. Bi qalkirina mafên Kurdan ên bi sînorkirî ev meseleye bi vî awayî nayî çareserkirin... Ne pêkan e ku serdestiya gelekî li ser gelekî din hebe. Ger hemû gelên ku li vî welatî dijin, wekî hemwelatiyên wekhev neyên qebûlkirin, çareseriyên rasteqîn û nîqaşên rasteqîn ne pêkan e.

**We got 'em nebêjin her du alî' lê belê di wexteke nêz de, pêvojoya 2013'an hebû. Li vir teref hebûn. Kêmasiya pêvajoya 2013'an ew bû ku mesele daxistin asta 'du alî'yan?**

Niha gava ku em lê dinêrin li herêmê şer heye. Tevgera Sîyasî a Kurd li herêmê temsîlkirina Kurdan de aktoreke girîng e. Terefên wek dewlet û Tevgera Sîyasî a Kurd dikarin li dawî li vî şerî bînin. Di sala 2013'an de jî teref baş hatibûn tespît kirin. Aktorên ku şer bi dawî bikin û diyalogê bidin destpêkirin hatibûn cem hev. Kêmasiya sereke, di baweriya terefan de pirsgirêka baweriyê hebû. Yanê bêbawerî hebû. Divê aktorên rast bi rê û rêbazên rasteqîn vê pirsê çareser bikin, divê pêşî bêbaweriyê ji holê rakin. Ev mesele teqez ne meseleyeke ku bi hewlên polîtîkayê bê çareserkirin e. Divê terefên vê meseleyê ne bi gotinên polîtîk lê bi hewlên biwîcdan û biexlaq nêzîkî vê meseleyê bibin. Ger ev mesele bibe amûreke hilbijartin, referanduman an jî bibe amûreke xurtkirina qada serdestiyê, ew wê bibe hewleke ne rast. Bi tenê mirov di sala 2013'an de li herêmê binêre gel di nava kelecan û hêviyekê de bû. Tevî kelecana gel evqas zêde bû pişt re bi dawî bûna pêvajoyê di civakê de bû sedema dilmayînê. Ev şikestina xeyalan paşê bû sedema dilmayînê.

**Gelo, bêbaweriya her du aliyan wê çawa ji holê rabe ?**

Ji bo ku pêvajo neyê bi dawî kirin divê her du alî pêşî werin ba hev û sedemên vê bêbaweriyê biaxivin. Divê tecrûbeyên ji cîhanê jî feyde bê giritin. Ger gelek aliyên civakî beşdarî pêvajoyê bibin wê bêbawerî jî ji holê rabe. Divê Meclîs bi awayekî aktîf rola xwe bilîze, ger nûnerên gel û rêxistinên civakî yên sîvîl tevlî vê pêvajoyê bibin û pêvajo bi awayekî eşkere bi rê ve biçe.



> Em amade ne û emê berpirsiyareke di çarçoveya wicdanî, exlaqî û mafên mirovan de bigirin. Me eşkere kir ku bo pêşerojeke hevpar a vê civakê û hewla di çarçoveya azadî û mafên sereke de, dikarin berpirsiyariyê bigirin.

### Bi ya we rewşa Kurdistana Başûr û Rojava wê bandoreke çawa li ser Kurdistana Bakur bike?

Li Rojhilata navîn li gelek herêmên Kurdistanê guhertinên cidî, veguherîn û ji nû ve avabûn pêk tên. Bi salan li herêmê şer û pevçûn çêbûn. Erdnîgariyeke wisa hesreta aştiyê dike, hêviyên me hemûyan jî pêkhatina aştiyê ye. Di çar parçeyên Kurdistanê de hê jî hebûna tengasiyan, tunebûna rewşeke sîyasî a azad ji bo Kurdan gelek zehmet e. Lê belê niha di Rojava û Kurdistana Başûr de deskeftiyên baş hene. Ev deskeftî incax bi îttîfaqa Kurdan re wê bi hêztir bibe.

Êdî li cîhanê aştî tê axaftin. Wekî mînaka Kolombîyayê... Bi ya we Tirkiyê di van hevdîtinên aştiyê de kê model bigire wê baştir bibe?

Ger li gorî wicdan û exlaqê ji bo vê meselê hewl bide, dikare rê û rêbazên xwe diyar bike. Dema ku ev rêbaz diyar kirin, dikare ji tecrûbeyên berê feyde bigire. Çand û dîroka her welatî cuda ye. Her çiqas êş mîna hev bin jî di xala baweriya terefan de hewla her welatî ji hev cuda ye. Divê rêbazeke cihêreng bê diyarkirin. Wî ya wek welatekî binavkirin dibe ku zehf baş nebe.

Tevî ev qas tiştê aştî pêkan e gelo?

Ger ev qas êş li welatekî bihata jiyîn ev civak wê bi awayek zehmet bihata ba hev. Bi rastî hêviya aştiya civakî, tevî evqas mirov canê xwe jî ji dest dane li ba me kelecanekê çêdike. Civak hêviya xwe ya jiyana hevpar diparêze.



### JI BAROYÊN KURDISTANÊ BANGA ÇARESERKIRIYÊ

Li Bakurê Kurdistanê di serî de baroyên Amed û Wanê 15 baroyan di 22ê Nîsanê de bangewaziyeke hevpar dan. Di bangewaziya ku piştî referandumê li Sêrtê hatibû dayîn de; daxwaza sekinandina şer, ji nû ve hevdîtinên çareseriyê û bi guftugoyê çareserkirina pirsa Kurd û ji bo li ser aştiyê bê axaftin baroyan destnîşan kirin ku dikarin bibin navbeykar. Em bi Serokê Baroya Wanê Murat Tîmur re derheqê bangewaziya hevpar a baroyan û bo çareseriya pirsa Kurd de axivîn. Murat Tîmur diyar dike ku hêj bersivek bo bangewaziya van nehatiye. Tîmur dibêje ger bersivek neyînî jî hildin wê dîsa bo bangewaziya aştî û berpirsariyên xwe pêk bînin. Tîmur amaje dike ku di vê mijarê de divê dengên Kurdan ên referandumê jî li ber çavan bên girtin.

### Rêjeya zêde ya beşdarbûna Kurdan a li referandumê bo çaresiriyê peyamek bû?

Beşdarbûna zêde a Kurdan, ji du aliyan ve mirov dikare şîrove bike. Rêjeya zêde ku gotin 'Na' yên ku gotin 'Erê', di çareserkirina pirsigirêkê de terefan eşkere dike. Û sîyaseta demokratîk hate nîşan kirin. Bi ya me, beşdarbûneke wiha, wek peyam ji terefan re got 'cîhê ku 2013'an a ku hûn lê mabûn berdewam bikin' bû.

Di pêvojoya berê de destaya 'Mirovên Aqilmend' hebû. Bangewaziya Baroyan a 'navbeynkariyê ' bo pêvajoya nû wekî 'Mirovên Aqilmend' e ?

Gotina 'Mirovên Aqilmend' gotineke pir mezin e. Berê avakirina desteya mirovên aqilmend tiştekî baş bû lê kêm bû. Em wekî baroyên Herêmê/baroyên Kurdistanê dixwazin vê yekê bibêjin: Em ji nêz ve binpêkirina mafên mirovan dişopînin. Me got ji bo avakirina aştiyek bi wicdan û biexlaq em jî ger her çi berpirsiyarî hebe em bo vê amade ne. Me hewla xwe ya di çarçoveya mafên sereke û azadiyê de diyar kir. Me deklere kir ku em dikarin berpirsiyariyê ji bo ku pêşerojeke hevpar a vê civakê bigirin.

Heta ku bi salên 90'î re hevrûbûyînek nebe û binpêkirinên mafên di demên nêz de jî tên zanîn. Bo her du aliyan hevrûbûna ev her du deman wê zehmet nebe?

Ger terefên vê meseleyê bi awayekî jidil hewl bidin wê hemû pirsgirêkên vê civakê bên axaftin û nîqaşkirin. Helbet ev pirsgirêk ne pirsgirêkên ku di nava salek û du salan de bêne çareserkirin. Lê belê bi tenê bila terefên vê meseleyê jidil nêzîkî vê pirsgirêkê bibin. Di vê civakê de travmayên giran û dilmayîn çêbûn. Zarokên vê civakê travmayên giran jiyan. Lê belê tevî travma û êşan dîsa jî gelên Tirkiye xweyî îradeya jiyaneke hevpar in. Lewma dilmayînan, incax bi riya hevrûbûna rabirdûyê re dikarin ji holê rakin.

Bersivek bo bangewaziya we hat?

Me berê jî çend caran bangewazî dabûn. Terefên vê meseleyê jî berê nirxandinên cur bi cur kirîbûn. Em hêviya bersiva bangewaziya xwe ne. Ger bersivek hat, em amade ne û emê berpirsiyareke di çarçoveya wicdanî, exlaqî, mafên mirovan de bigirin.

Lê bersivek erenî neyê?

Ger bersivek erenî neyê, em vê meseleyê nikarin li vir bihêlin. Divê, em hêviyên civakê xurt bikin. Bangewaziyên me wê berdewam bikin. Lêbelê ne bi tenê bangewazî em wek baroyên Kurdistanê ji bo ku aştî ji nû ve çêbe, xebatên me dê berdewam bikin.

Ger daxwaza we ya navbeynkariyê bê pejirandin û hevdîtin dest pêbike, hûnê biçin Qendîlê jî?

Di pêvajoya din de yek ji pirsgirêkên ku qewimî jî pêvajo li gorî statuyeke qanûnî dest pê nekiribû. Vê yekê bêbawriyek jî çêkiribû. Di derheqê kesên ku çûbûn Qendîlê de lêpirsîn hatibû vekirin û girtin çêbûbûn. Ger pêvajo di bin bingeheke qanûnî de bi rê ve biçe, em amade ne ku hemû berpirsiyaran wekî hiqûqnasan bînin cî. Bi daxwaz, li gor zanîna dewletê ev pêk hat. Pêvojoya qanûnî berbi aliyekî ve çû wê demê hevdîtin jî wek sûc hat hesibandin.



### Ji bo çareseriyê daxwazek jî ji girtîgehan hatibû. Hûn çawa dinirxînin; heta ku yên derve hebin mirov girtiyan bajo pêş?

Rastî û şaşiya vê niqaşê bi xwe jî ne rast e. Em ne ev kesên ku biryara rast an jî şaş bidin e. Kesên ku di şert û mercên zehmet de li girtîgehê bedena xwe ji bo ku di civakê de aştî ji nû ve çêbe radizinîn, ev yek heman demê kêmasiya sîyasetvanan derdixe holê.



MURAD CÎWAN

## Talana Koşka Ahmed Xanê Helo Xanê Erdelanî

Yek ji wan mîrekiyên Kurdistanê ên ku erdên wan li ser serhedên navbera Osmanî û Îranîyan parçe bûn, bi qirnan bûn meydanên şeran û ji herdu aliyan rastî êrîşan hatin, Mîrekiya Erdelan e.

Erdên tarîxî yên Mîrekiya Erdelanê nuha li Başûrê Kurdistanê devera Şarezorê, Xaneqînê û Qeredaxê li Rojhilatê Kurdistanê li Îranê, ustana Kurdistanê; Sinneyê (Sinne-duzê, Senendejê) digirt nav xwe. Ew welatê eşîretên kurdên goran bû.

Mîrên Erdelanê li gor Şeref Xanî, bi eslê xwe ji nesla sultanên Merwaniyên kurd ên Diyarbekirê, malmezinên eşîreta Erdelanê ne. Mezinê wan ê pêşîn ê naskirî, Baba (Bawa) Erdelan e ku hat şandin Şarezorê da li wê derê fermanrewatiya eşîrên goran bike. Paytexta wî Şarezor bû.

Mîrekiya Erdelan piştî vekişiyana Moxolan ji deverê, serbixwe derket pêş, heta dewra Şah Îsmaîlê Safewî. Şah Îsmaîl bi serkeftinên xwe re ew dever jî hemî xistin bin destên xwe û Erdelan bû mîrekiyeka ser bi safewiyan ve. Piştî Şerê Çaldiranê, bi taybetî piştî ku Qanunî yê sultanê Osmanî Bexda fetih kir (1534), axa Erdelan ket nav serhedên herdu dewletan. Hin kele û bajarên Erdelanê li alî Osmaniyan, hin jî li alî Safewiyan man, dever ji alî îdarî ve di nav mîr û mîrzadeyên Erdelanî da hat dabeş kirin, her yekê ji wan paytextek ava kir; piştî Şarezorê, Hesenawa (Hesenabad), di dûv re jî Sinne (bi avakirina keleyekê re navê wê bû Sinne-duz, Senendez/j).

Koşka ku ê li vê derê behsa wê bê kirin, di dewra Xan Ahmed Xanê kurê Helo Xanê Erdelanî de li Hesenawaya paytexta mîrekiyê bû. Ahmed Xan, di piçûkiya xwe de ji bal bavê xwe Helo Xan ve hatibû şandin qesra Şah Abbasê I, li wê derê mezin û perwerde dibû. Ew bi xwişka Şah Abbas re zewicî, heta hat gotin ku bû şîî jî.

Di 1615-ê de Şah Abbas bi nîşana (pileya) xan (mîrêmîran) ew teltîf kir û şand da ji dêlva bavê xwe ve Mîrekiya Erdelanê birêve bibe. Kurdên Erdelanî sunne bûn, meyla pirraniya mîrên wan ser bi osmaniyan ve bûn, lê wan bi hostatî pêwendî li gel Safewiyan jî dimaşandin û carina ji mecbûrî, bêtir dibûn meyildarên wan jî.

Di destpêka sedsala 17-ê de Şah Abbas, di encama îstîfadekirina ji krîzên siyasî yên paytexta Osmanî, Baxdat li gel dorûbereka fireh ji osmaniyan zeft kir. Li serhedan erda Erdelan heta Şarezorê û rojhilatê Mûsilê jî ya ket bin fermanrewatîya Safewiyan yan jî siya siyaseta wan. Heta peymana Qesra Şêrîn (1639) Osmaniyan gelek sefer şandin ser Bexdayê, lê her têkçûn. Herî dawîn Muradê IV. bi xwe sefer bir û Bexda ji nuh ve fetih kir.

Sefereka wiha di 1629/30 de ji bal orduyeka mezin a bi serokatiya Xusrew (Husrev) Paşayê wezîrê-ezemê û serdarê Osmanî ve çû ser Bexdayê. Her çendî ew têk çû, lê di çûn û vegerê de orduya osmanî gelek êrîş birin ser kele û bajarên kurdan ên ser serhedan, bi taybetî yên li alî Safewiyan. Xan Ahmed Xan jî wê demê ji Hesenawa Erdelan îdare dikir. Meyla wî bi alî safewiyan ve bû. Birayê wî Mu'min Xan jî meyildarê Osmaniyan bû.

Di Tarîxa Naîma de behsa sefera orduya Xusrew Paşa a ser Hesenawaya paytexta Ahmed Xan û teswîrên koşka wî, zeftkirin û talankirina wê tê kirin. Ew, agahiyên balkêş in, îro hêjayî behskirinê ne:

''[Orduya Osmanî ji newala Şêx Eyyar] rabû, di çar qonaxan de li Hesenawayê danî ku koşka Ahmed Xanê kurê Helo Xanê Erdelanî lê ye. Hesenawa herdu aliyên wê palên bi ser deşteka berfireh a letîf wek a Kaxitxaneyê (Îstanbulê) ye, di nîveka wê re robareka wek zulalê(reng berfîn, sipî) diherike. Koşkeka bi navê Baxê Buhuştê wek qûleyê çar goşe hatiye avakirin. Pêşiya wê baxçeyên mezin, hewzeka mezin a bi sipîndar û darên sêberder ên din xemilandî, av ji aliyekî ve dikevê di alîyê din re dertê.

Aliyekî vê koşkê vekirî ye. Qatiyayên (tawanên) koşkê bi ava zêr û bi kevirên biqîmet ên ji rengên tarî yên lacîwert û sîmên zirav nexişandî, li nîveka qatê jêrîn şîşxaneyek (avîze), li her ode û quncikên wê kaşaneka çargoşe, li qatê banî gelek ode ku pencereyên wan li derdorê û li bexçê dinêrin. Li ser hev sê qat ode, dîwarên wan ji sewaxeka awayekî mermerên kafûrî yên sipî û alçî û hêkan çêkirî weka kaxetên letîf ên berraq ên Abadî(ên Çînê û Hindê) dişibin mirêkên şefaf.

Dîwarên hinan wek serpûşan (kofiyan) nexşkirî û resimandî ji nexş û rengên zirav, di hinan de teswîrên herb û cengan, di hinan de meclisên cuda yên fuhûş û zînayê hatine teswîrkirin. Her dîwarê wê bi heykel û resimên rengareng ên ku Erjeng (mînyaturên Manî) dexs dikin, xemilandî bûn ku hemtayên wan nehatibûn dîtin. Xwediyê wê Ahmed Xanê binavkirî bû ku xwe ji serdar veşartibû.

Eskerên talanker ku gihîştin koşkê, ketin serê, nexş û xemlên wê xera kirin, taswîrên meclisên gotî mehû kirin, ew derî û rewzenên ku jibernedibûn hemî rakirin, xerab-yebab kirin. Tenê dîwarên kargîr û sitûn man.''

Li ser riya sefere orduyê gelek talanên wiha kiribûn.

# Pêvajoyeke nû ya çareseriyê pêkan e?





NÛJÎN ONEN

LI Tirkiyê di 16 Nîsanê de ji bo 18 maddeyên destûrê biguhere referandumek pêk hat di encamê de gel %51 guherîna sîstemê pesend kir. Di navbera Erê û Na yê de cûdahiye mezin tunebû her wiha ji Bakûrê Kurdistanê ji bo her du aliyan jî piştgiriyek xurt derket holê. Piştî ku hin aliyên Kurdan ji referandûmê re gotin 'erê' bi vê encamê pirsên bi vî awayî hat rojevê "Di pêşerojê de AKP dê polîtîkayên xwe li hember Kurdan biguherîne? Pêvajoya çareseriyê dê dîsa destpê bike?" Derbarê van pirsên ku hatine rojevê de akademîsyenan pirsên Heftenameya Basê bersivandin. Prof.Dr. Fazıl Hüsnü Erdem "Kurdan bi daxwaza pêvajoyeke nû gotin erê. Akademîsyen Naîf Bezwan jî dibêje "Fikra ku dê piştî referandûmê li Tirkiyeyê polîtîkayên li hember Kurdan biguhere ne rast e" Rojnameger û Akademîsyen Deniz Çiftçi jî wiha dibêje " Kurd, di siyaseta Tirkiyeyê de faktora sêyem e."

**''Tenê li parçeyekî Kurdistanê birêvebirina siyaseteke neteweyî ne pêkan e''**

Akademîsyenê Zanîngeha Aborî û Siyasî ya Londonê (LSE) Naîf Bezwan, Li ser pirsa dê piştî referandûmê Tirkiye li hember Kurdan polîtîkayeke çawa birêve bibe wiha dibersivînê: "Fikra ku dê piştî referandûmê li Tirkiyeyê polîtîkayên li hember Kurdan biguherin ne rast e. Desthilatdariya Erdogan di salên 1925-30 de Kemalîstan çi polîtîka meşandibe bi Takrîr-î Sûkûn, bi qanûnên koçberkirinê, Erdogan jî îro li Kurdistanê siyasetê wiha bi rê ve dibe. Ev bi temsîliyeta Erdoğan dibe lê tenê bi destê Erdogan bi rê ve naçe. Bi îttîfaqên Erdogan, Bahçeli, Ergenekon tê rêvebirin û piştgiriya hin aliyê CHPê jî distînin, ev polîtîkayên dewletê yê antîKurd û antî-Kurdistan in. Ji bo meseleya Kurdistanê ne pêkan e ku em her parçeyekî ji hev du cûda bifikirin. Li Bakûr, Başûr û Rojavayê Kurdistanê pêvajoya siyasî ya ku her perçeyî ji nêz ve eleqedar dike heye. Çi referandûma Başûrê Kurdistanê ya bo serxwebûnê, çi parvekirina hêz û demokrasiya li Kurdistanê û çi jî serkeftina têkiliyên navneteweyî yê Kurdan tenê bi lihevkirina aktorên siyasî yê Kurdan re pêkan e. Heger helwesteke wiha tunebe dê destkeftiyên Kurdan têkevin metirsiyê û dê rastî polîtîkayên parçekirinê bên.

Bezwan li ser midaxaleya Tirkiyeyê ya li hember Şengal û Rojava jî "Aktorên siyasî yên Kurdan ji bo êrîşên li hember can û pêşeroja xwe nekarîbûn daxuyaniyeke hevpar bidin. Ev qelsiyeke siyasî ye. Îtîfaqên ku Erdogan niha tê de ye destûrê nade him di hundir de him jî li derveyî welêt bi Kurdan re sîstemeke demokratîk û aşîtiyane pêk bê." Bezwan dibêje "Ji ber vê rewşê berpirsyarî di destpêkê de li ser milên Hikumeta Başûrê Kurdistanê û hemû aktorên Kurdan yê siyasî de ye. Berpirsyariya çareserkirina pirsgirêkên siyasî û civakî aîdê Kurdan e."



Deniz Çiftçi



Naif Bezwan

**"Kurdan piştî ku gotin 'erê' dixwazin ku pêvajoyeke nû dest pê bibe''**

Profesorê Hiqûqê yê Zanîngeha Dîcleyê Fazıl Hüsnü Erdem dibêje di referandûma 16 Nîsanê de dengên Kurdan encam diyar kiriye. Erdem dibêje "Piştgiriya Kurdan ya ku dane referandûmê ji aliyê hikumetê ve bi du awayî dikare bênirxandin" û wiha berdewam dike: "Ya yekem hikumet dikare bi vî awayî binirxîne, 'pesendkirina polîtîkayên ewlehiyê' ya din jî dikarin bi vî awayî binirxînin 'ji nû ve destpêkirina pêvajoya çareseriyê û li herêmê rawestandina pevçûnan.' Kurdan piştî gotin erê daxwazin ku pêvajoyeke nû dest pê bibe."

Erdem dibêje "Rûdanên Rojhilata Navîn yekser bandorê li ser pirsa Kurd jî dike" û wiha diaxive : "Pirsa Kurd êdî ne pirsa Tirkiye ya navxweyî ye êdî bûyê pirsa Rojhilata Navîn. Dema em li Rojhilata Navîn dinêrin li Rojava herêmeke xweser ya defacto hatiye dameziran-din. Ev herêma xweser di destê PYD û YPG de ye lê ev her du di lîsteya terorê ya Tirkiyeyê de ne. Tirkiye her tim dibêje emê li hember PYD û YPG heta dawiyê têbikoşin. Ji aliyê din krîza Kerkûkê jî rûdaneke girîng bû. Helwesta Tirkiye ya li hember krîza Kerkûkê ne helwesteke ku di xizmeta ji bo çareserkirina pirsa Kurdan de bû. Helwesta Tirkiye ya li hember ala Kurdistanê jî bêgûman hemû Kurd aciz kir. Tirkiye ji bo pirsa Kurd ya navxweyî çareser bike divê polîtîkayeke ku Başûr û Rojava jî li berçavan bigire bimeşîne. Divê Tirkiye ji bo pêvajoya çareseriyê stratejiya sala 2013'an ya bi navê 'Bi Kurdan re Mezinbûn' wek bingeh bigire. Pêwîst e ku Tirkiye ji bo çareserkirina pirsa Kurd ya navxweyî, piştgiriya serxwebûna Başûrê Kurdistanê bike."



Fazıl Hüsnü Erdem

> Fazıl Hüsnü Erdem; Başûrê Kurdistanê di meseleya serxwebûnê de biryardar e û ev yek ji xwe diyar e. Tirkiye jî divê ji bo meseleya Kurd ya hundirîn çareser bibe, piştgiriyê bide pêvajoya serxwebûna başûr.

### "Hêza ku AKP bikare pê re koalîsyanê bike Kurd in!''

Akademîsyen Deniz Çiftçi derbarê heyama nû ya ji bo polîtîkayên li hember Kurdan wiha diaxive: Salên dawî li Tirkiyeyê bi awayekî girîng di nav civakê de berberî hevbûn çêbû. Ev berberî hevbûn dê zorê bide AKP ku koalîsyonên nû pêkbîne. AKP di referandûmê de bi MHP re koalîsyon ceriband lê di civakê de hemberiya vê koalîsyonê zêde nebû. Di referandûmê de ev bi awayekî zelal hat dîtin ku Kurd di siyaseta Tirkiyeyê de faktora sêyem e. Ji ber wê AKP ji bo bigihêje armancên xwe yên siyasî hêza ku tenê dikare pê re koalîsyonê bike Kurd in. AKP piştî îttifaqa neteweparêz û muhafazakaran koalîsyona duyem dê bi Kurdan re bikin. Gotina ku AKP piştî referandûmê dê bi Kurdan re koalîsyonê bike, ev nayê wê maneyê ku dê bi hemû hêzên di siyaseta Kurdan de cih digire, bikin. Di vê koalîsyonê de dibe ku bi awayekî rolek qels bide HDP û PKK jî. An jî Tirkiye dikare HDP û PKK nexe nav pêvajoyê, bi partiyên din yê Kurdan re îttifaqan bikin. Heger ku AKP bi piştgiriya Kurdan serokatiyê bi dest bixe belkî ji bo çareseriya pirsa Kurd gavên nû bên avêtin.

# Li hember Kurdên Elewî kokbira 1937-38an



MUNZUR ÇEM

80 sal berê li Dêrsimê bûyereke pir giring û taybet qewimî. Gelo ev bûyer çi bû, çima dest pêkir û çawa bi dawî bû? Gor dewleta Tirk, li Dêrsimê serokeşîr, axa û seyîd ji bo parastina berjewendiyên xwe, li dijî reforman derketin û serî hildan, dewlet jî mecbur ma bersiva wan da. Lê, bêguman rastî ne wisa bû.

Wek tê zanîn, Komara Tirkîyê, 1923'an de li ser xeta nasyonalîzmê hat damezrandin. Ji ber ku nasyonalîzma Tirkan nîjadperestî bû û îro jî wisa ye, karbidestên Tirkiyê, hebûna gelên ne Tirk red û înkar kirin, ji holê rakirina ziman, kultur û nasnemaya van, heta hebûna van kirîbûn hedefeke sereke. Bêguman di şert û mercên wê rojê de hedefa bingehîn Kurd bûn.

Ji bo gihiştina vê armancê jî Dewletê di 1925'an de bi navê "Şark Islahat Planı" (Plana Îslahkirina Şerqê) planek taybet danîn pêşîya xwe. Ji wê rojê bigirin heta îro, di pratîkê de, li hember Kurdan polîtîkaya Komara Tirkîyê li ser vê planê tê meşandin.

Dêrsim, ji ber hin sebeban, wek karbidestên Osmaniyan ji bo hukûmeta Enqarayê jî hedefeke taybetî bû. Van sebeban, meriv dikare bi vî şiklî rêz bike:

-Dêrsimiyan, bi sedsalan li hember zulm û neheqiya Osmaniyan ber xwe dabûn.

-Destpêka sedsala 20'an de Dêrsimiyan bi dengekî bilind mafên neteweyî daxwaz kirîbûn û ji bo vê armancê, ber xwe dabûn.

- Di şerê hember Yunaniyan ê 1920-22'an de Dêrsimiyan alîkariyek balkêş nedabû Mistefa Kemal,

-Di jenosîda 1915'an de Dêrsimiyan Ermen parastibûn,

- Wek cografîk, Dêrsim heremeke gelek stratejîk bû.

-Di Şerê Cîhanê yê Yekemîn de çiqas ku Dêrsimîyan di destpekê de hemberê Rusan şer kirîbûn jî paşê li hev hatîbûn û di nav wan da têkiliyeke balkêş peyda bûbû.

-Ji ber ku Dêrsimî kurdên elewî bûn, li gel sebebên din, nasnameya wan a dînî jî li derveyê pîvanên dewletê bûn.

Ji bo gihiştina armancên xwe, dewletê di 1926'an de ji bo Dêrsimê planeke taybet amade kir û piştî vê rojê kar û xebata asîmîlekirin û perçiqandina gelê Dêrsimê gor vê planê meşand.

Di vê çarçoveyê de dewletê 1926'an û 1930'an de du operasyonên leşkerî pêk anî bi vî şiklî zerareke mezin da Dêrsimiyan, hêza wan qels kir. Operasyona 1926'an li başurê rojava, a 1930'an jî li bakurê Dêrsimê qewimî.

1934'an bi navê "Mecburi Îskan Kanunu" (Qanuna Îskana Mecburî), ji bo nefîkirinê qanûneke nû derxisitin.

1935'an de dewletê vê gavê ji bo Dêrsimê bi navê "Tunceli Kanunu" qanûneke taybet derxist. Naverok û armanca vê qanûnê zaf aşkera pêkanîna kokbirê bû. Piştî derxistina vê qanûnê, ji bo Dersimê li Xarpêtê "Mufetîşîtiya Giştî ya Çaran" hat damezrandin, bi navê Abdullah Alpdoggan generalek wek walîyê Giştî hat tayinkirin û îdareya orfî hat îlankirin. Îdareya Orfî di 1936'an de efûyeke giştî îlan kir û dest bi komkirina çekan kir. Çiqas ku Seyid Riza û hin kesên din ev gav wek lîstikekê nirxandin û dij derketin jî piranîya eşîrên Dêrsimê çekên xwe teslîm kirin. Qismek van ji cahşîtî qebul kirin û bûn piştevanên dewletê.

Hukumeta Enqerayê, 4ê gulanê 1937an da, bi beşdarbûna Serokê Dewletê Mustafa Kemal û Serokê Serokeraniyê Fevzî Çakmak, civîneke taybet amade kir û biryar da ku Hereketa Dêrsimê êdî bi temamî dest pê bike. Di vê qerarnameya veşartî de paragrafek wisa ye:

Eger meriv tenê bi êrîşan bimîne, ocaxên îsyanan jî her daîm zîndî dimînin. Ji bo vê yekê jî, ên ku berê dest avêtine çekan û ên ku niha jî çekan bikar tînin, gerek cihê bûyerê de û bi lez bên bêhereketkirin ku nikarin careke din zerarê bidin. Lazim e ku gund bi temamî bên wêrankirin û malbat bên nefîkirin.

Meriv gerek xerckirina pereyan mefikire, çiqas ku ji dest hat, nav wan de alîgiran peyda bike.

Dîsa eynî rojê firokeyên cengê li asimanê Dêrsimê firiyan û belavokek belav kirin. Paragrafek wê de jî weha dihat gotin:

(...)

Eger wek me nekin, hunê ji aliyê artêşên komarê yên qehirkirî va bên mehfkirin. Ev belavoka dawî ya ku şefkat û merhameta hukumeta Komarê ya dawî tîne ziman, ji zar û zêçên xwe re bixwînin û di nav 24 saetan de bersivê bidin. Wek din çiqas ku em naxwazin jî, hêzên ku we mehf bikin, wê bikevin tevgerê. (1)

Pişt re artêşê di her alî de dest bi operasyonê kir. Lê mixabin eşîrên ku bi Sey Riza ra ketîbûn îttîfaqê û bi hev re sond xwarîbûn, piraniya wan bêdeng man. Lê dîsa jî di destpêkê de Dêrsimî gelek cîyan de wek grûbên cûda ketin nav tevgera xweparastinê. Devletê bi lez hereket kir û gelek serekeşîr girtin, şandin girtgeha Xarpêtê ku ev jî bû sebebê sistbûn û xewpaşvekişandina hinek eşîran. Di aliyê din de dewletê bi pere û waadên mezin hinek Dêrsimî kirin alîgirên xwe ku nav wan de du biraziyê Sey Riza jî hebûn. Di eynî rojê de bi destê xwefiroşan şervanê mezin, serokê eşîra Bextiyaran Şan Axa, rewşenbîr, şaîr û îdeoloxê tevgerê Alişêr Efendî û jina wî Zerîfa Xanim hatin qetilkirin. Di destpêka îlonê de, Sey Riza bersiva pêşniyara Walîyê Erzinganê pozîtîf da û ji bo çareseriyek aştiyane çû Erzinganê. Lê dewletê ew girt û şand zindana Xarpêtê. Piştî dadgehkirineke formel û hovane, ew, kurê wî Reşik Usên û penc kesên din li 15.11.1937an de li Xarpêtê hatin dardekirin.

Çiqas ku Sey Riza û çend kesên din hatîbûn dardekirin û gelek serokeşîr di zîndanê de bûn jî,1938'an de operasyonê dîsa dest pê kir. Ji ber ku Dêrsimiyan dît ku dewlet pê wan dixapîne, berxwedaneke balkêş pêkanîn. Lê ew berxwedan li herêmên cûda-cûda bûn û di nav wan de koordinasyonek tune bû. Loma jî tevger peyderpey hat şikestin. Berxwedana herî mezin li herêma eşîra demenan qewîmî û ew jî 21.07.1938'an de di Geliyê Laçê de hat şikandin û bi vê toreyê berxwedana çekdarî bi dawî bû. Lê qetlîama herî mezin jî piştî şikestina vê bûyerê qewimî. Serokwezîr Celal Bayar, derheqê vê buyerê de behsa civîn û guftugoyên xwe, Fevzî Çakmak û Mustafa Kemal dike û di dawiyê de dibêje:

"Atatürk got `Ez mesuliyetê digirim ser xwe emê Dêrsimê bikujin." Û me kuşt. (2)

Pêla herî mezin a jenosîdê bi navê "Manveraya Yekemîn" hatîbû binavkirin û di 10ê Tebaxê de, bi bêşdarbûna 50 hezarî zêdetir leşker dest pê kir. Artêşa Tirk, zarok-mezin, jin-mêr ferq nake; bu guleyan, bi top, mitralyoz û teyareyan, bi sungiyan, bi şewitandinê û bi gazên bi jahr, dora 50 hezar kesê bêguneh qetikir. Agir berdan; gund, zevî, bax-bexçe û daristan şewitandin. Dêrsim kirin meydana şewatê. Lê gotin û îqazên Sey Riza, Alîşêr û kesên wek wana jî rast derketin; ewên ku bêdeng mabûn, yan jî bûbûn alîgirê dewletê, ji jenosîdê para mezin van girtin, bedela herî mezin wan da.

Mustafa Kemal, di 1936'an de, di axaftina xwe ya vekirina parlamentoyê de, Dêrsim wek "apseyek bêderman" tarîf kirîbû û gotîbû ku "gerek ev apse bi operasyonekê ji kokê ve bê pakkirin". Niha ev daxwaz, rastiya Dêrsimê bû.

*1) Türkiye Cumhuriyti`nde Ayaklanmalar (1924-1938), Genelkurmay Başk. Harp Tarihi Dairesi, s.391.*

*2) Kurtul Altuğ, Celal Bayar Anlatıyor. rojnameya Tercüman, 17 Îlonê 1986.*



ALÎ BAYRAM

## Daxûyaniya Baroyên Herêmê û Proseya Aştiyê

24.04.2017 Baroyên herêmê bi serperiştiya Baroyê Sêrtê civîna xwe ya mehane li dar xistin û nêrîn û helwesta xwe ya di derbarê giştpirsîyê, guherîna xalên destûrê û her wisa kêşeya Kurd de bi rêya daxûniyekê diyar kirin. Di daxûyaniyê de Baroyên herêmê bal kişandin ser kêşeya Kurd û daxwaz kirin ku pirsgirêka Kurd di zemîneke siyasî de bi rêyên demokratîk bê çareserkirin. Di dawiya daxûyaniyê de Baroyên herêmê ji bo çaresekirina kêşeya Kurd amaje bi rol û berpirsiyariya baroyan kirin û gotin pêwist be baroyên herêmê dikarin di navbera her du aliyan de bibin pira dîyalog û danûstandinê.

Ev bangawaziya bêdeng a ji aliyê baroyan ve hatî kirin li bin sîbera gurmîniya çek û teqemeniyan de wenda bû. Ji ber ku retorîka şer serdest e û dengên nerm, dengên aşitîxwaz di sirûştên hov de nayên bihîstîn. Her wisa qelemşor û tirolên çapemeniyê ji quncikên mala xwe ya germ nefreta nijadperestiyê sortir û agirê şer gurtir dikin. Siyaset, bi tevayî di bin hikm û bandora retorîka şer de fetisiye.

Di van her du salên dawî de li bajarên qedîm û dîrokî şereki giran û têrziyan çêbû. Di gel ziyanên canî, bi hezaran kes ji malê xwe, ji warê xwe bûn û li ber pêlên koçberî û derbideriyê ketin.Tax û kolanên bajaran weke navendeke şer hatin bikaranîn. Ji ber xendek û barîkatan li gelek parêzgeh û navçeyan qedexeya derketina derve hat ragihandin, bajar bi mehan hatin dorpêçkirin û mafên mirovan yên sereke hatin binpê kirin. Bîlançoya şerê xendekan bê hed û hesap giran e û niştecihên bajaran di bin metirsiya şer de hizrê dahatûya xwe dikin.

Şer bi her awayî bandoreke negatîf li ser jiyanê û sosyolojiyê dike. Ji ber wê jî divê jiyan rojek beriya rojekê vegere halê xwe yê berê û civak jî bikare êş û birînên xwe derman bike. Da ku civak bikare encamên şer yên neyînî beralî bike û bikare wê mohra reşa derûnî ji ser xwe bavêje xwe rehabîlîte bike. Şer çiqas dirêj û dijwartir bibe jî di dawiya dawî de ji bo kêşeya Kurd ne rêya çareseriyeke mayînde ye. Kesên mejiyê xwe li ser vê meseleyê diêşînin û li dûrbîna rastiyê dinêrin baş dizanin ku kêşeya Kurd kêşeyeke girîft û mêjûyî ye û bi tedbîrên ewlekarî û rêbazên leşkerî nayê çareserkirin. Girîngiya bangawaziya baroyên herêmê jî ji vir tê. Ji ber ku dengekî nerm û sivîl e, dengekî aştîxwaz û realîst e, dengekî hiqûqnas û xwûdan insaf e.

Dînamîzma civakê ya çareserkirina kêşeyan carinan kêm dibe an ku carinan şiyana civakê têra çareserkirina hin kêşeyan nake. Nemaze civakeke bargiran, bêhêvî û westiyayî be nikare refleksên civakeke dînamîk nîşan bide. Civaka Tirkiye bi salan e li dor vê pirsgirêkê çerxa dide xwe û li rêyeke çareseriyê digere. Mixabin heta îrô jî tu rê ji bo çareseriyeke mayînde nedîtiye. Ji ber wê jî bi giştî weke civak baweriya xwe û şiyana xwe ya çareserkirina kêşeya Kurd wenda kiriye. Piştî hêviyên sala 2013'an yê dema "pêvajoya çareseriyê" di radeye herî bilind de li bin guhê erdê ketin şikestinek mezin li derûniya civakê de çêbû û di civakê de ew rih û kelecana çareseriyê nema.

Di demeke nazik û krîtîk de da ku civak bikare nefesekê bistîne, da ku ji bo civakê bibe henaseyeke jiyanê bangawaziya baroyên herêmê zor giring û watedar e. Ji ber ku bi gelemperî herêm bûyê qada şer û wêran bûye. Mebesta baroyên herêmê rawestandina çekan û avakirina pirekê ye di navbera her du aliyan de. Dema mirov mîsyona baroyan û rola wan a civakî raxe ber çavan wateya vê bangawaziyê baştir fêm dike. Mixabin, mirov vê hewldana baroyên herêmê ya di vê atmosfera xirab de weke lavayek bêbersiv dikare binirxîne. Ji ber ku bi serê xwe bangawazî hêviyeke mezin nade raya giştî an jî rê li ber dîyalogê venake. Giringtirîn tişt ew e ku baro ji bo çareserkirina kêşeyên civakî xwe berpirsyar dibînin û bi rêya daxûyaniyan raya giştî hişyar dikin. Zemîna aşitiyeke mayînde her çend kêm bûbe jî rijdbûna li ser çareseriya siyasî dikare motîvasyona civakê xurtir û hêviyan mezintir bike.

# Helwesta dewleta Îranê û Kurdên Xurasanê







ESKENDER CEIFERÎ

**KURDÊN** Xurasanê ku di 3 qonaxan de, ji zêdetirî 500 salan beriya niha ve ji Kurdistanê hatine koçberkirin, hertim rastî hewlên asîmîlekirinê ên weke qirkirinên siyasî û çandî hatine.

Herî dawî ew ji beşdarî di şeşemîn festîvala bîranîna Elîşah Xan Heyderîzade helbestvanê Kurd de bêpar bûn. Di festîvalê de nivîskarên Kurd ji Hemedan, Loristan, Urmiye, Sine, Kirmaşan û Îlamû beşdar bûbûn.

Ev rêgirtin, binpêkariya yasayên maf û azadiyan e ku li gora wan, her kes bêyî ku ji ber ziman, ol, baweriya siyasî yan jî yeke din jêbûna neteweyî û yan jî civakî, mal, zayîn an jî rewşeke din bibe, xwedî sûdwerigirtina ji hemû maf û azadiyan.

Ew piranî ji herêmên bakurê Rojhilatê Kurdistanê ne. Her ji dema desthilata Mannayan ve di sedsala 9'an ya beriya zayînê ve ew li Kurdistanê xwedî bandor bûn. Di dema çêbûna Împeratoriya Medan de rengê cudahiyên li navçeyê û dîsa jî tevlîbûna hêzan derdikeve ku Kurdên Kurmanc jî yek ji wan in.

Dem derbas bû û desthilat bû ya Şieyan. Di salên derdora 1590'an ya zayînê de hewla koçberkirina Kurdan ji Urmiye, Xoy, Makû û Selmasê ji bo Xurasanê dihat dayîn. Ew di salên di navbera 1598'an de heya 1602'an yên zayînê ji bo Bakurê Xurasanê hatin koçberkirin da ku welatê Farsan biparêzin. Ew koçberkirin di encama civînekê de hat ku di navbera Şah Ebbasê Sefewî û mezinên Kurdan re hate lidarxistin û serokhozên Kurd bi Sefewiyan re li ser koçberkirina wan lihev hatin. Beriya wê di şerê Çaldiranê de ku di sala 1514'an de çê bûbû, Kurdistan bûbû du perçe. Li hemberî koçberiyê hatibû misogerkirin ku wê mafê wan li Xurasanê parastî be.

Ev cara yekemîn nîn e ku astengî li hemberî çalakiyên Kurdên Xurasanê çêdibin. Beriya niha jî, wezareta Çanda Îslamî ya Îranê, rê nedabû ku festîvaleke Kurdên wê navçeyê bê lidarxistin. Festîvala Pîran Çengî ku her sal li bajarê Qûçanê li Bakurê Xurasanê birêve diçû û tê de hunermendên Kurd yên vê herêmê û bi taybetî kesayetên naskirî yên muzîka kevn ya vê herêmê beşdar dibûn, sala derbasbûyî pêşî lê hate girtin û îzna birêveçûnê jê re nehat dayîn. Ev di demekê de bû ku ji bo wê festîvalê ji aliyê Kurdên wê herêmê ve xerceke zêde hatibû mezaxtin.

Ev kiryar jî hemû bingehên Danezana Gerdûnî ya Mafên Mirovan binpê dike ku li gora wê, mafê çalakiyên welatiyan bêy liberçavgirtina sîstema dadwerî yan hokarên din yên weke qewmiyet, netewe, dîn yan bawerî, heye.

Weke çawa Mihemed Neqî Lutfî nûnerê Elî Xaminêyî li parêzgeha Îlamê ya Rojhilatê Kurdistanê û pêşnimêjê bajêr dibêje, nabe Zimanê Kurdî û nivîsa Kurdî li Îlamê hebe û divê pêşiya vê yekê were girtin, li Xurasanê jî heman rewş heye. Cîgirê parêzgarê Xurasana Bakurî di civînekê de ragihandibû ku dijberên Komara Îslamî dixwazin hesta nasyonalîstî angu hesta netewî di nav xelkê vê parêzgehê de çê bikin. Wî berpirsê bilind yê Îranî ji saziyên ewlehî xwastibû ji bo bêbandorkirina partiyên Kurdî li wir tevbigerin. Gotinên bi wî rengî hertim rastî nerazîbûna çalakvanan tên lê di hember de cihê wan çalakvanan dibe girtîgeh.

> Di şerê Çaldiranê de ku di sala 1514'an de çêbûbû, Kurdistan bûbû du perçe. Li hemberî koçberiyê hatibû misogerkirin ku wê mafê wan li Xurasanê parastî be.

Tevî ku Komara Îslamî ya Îranê benda yekem ya Danezana Gerdûnî ya Mafên Mirovan bi bêparkirina xelkê ji azadiyan ji wan standiye, benda duyem jî ku amaje dike ji ber statuya siyasî, hiqûqî an jî ya navneteweyî di navbera mirovan de cudayî nayê kirin û welatî li cem dewletan divê wekhev bin, binpê dike.

## Partiyên Kurd hilbijartinên Îranê boykot dikin

Çalakvanên Rojhilatê Kurdistanê, mînaka herî berbiçav ya nedana azadiya neteweyan, girtin yan jî rênedan bi weşandina herî kêm 15 kovar, belavok û heftenameyên Kurdî tînin ku di serdema Hesen Rûhanî serokkomarê niha yê Îranê de hatine encamdan. Ew amaje dikin bûdceya saziyeke navçeyî ya bi ser rêxistinên ewlehî û îstixbaratî yên Îranê ve, ji bûdceya çap û weşana Kurdî zêdetir e. Tenê ew rojnamên Kurdî û ew rojname bi bûdceya dewletê derdikevin, yên ku di berjewendiya hikûmetê de ne.

Mehmûd Ehmedînijad jî weke Rûhanî serokkomar bû. Ne çar salan lê heşt salan. Asta azadiyê li wî welatî herî kêm kiribû. Lê dîsa jî hin Kurd peyda bûn beriya ku navê wî derkeve yan jî bê redkirin, bi kincên xwe yên bav û kalan, propagende ji kesekî re kirin ku hukma darvekirina sedan ciwanên Kurd di serdema serokkomariya wî de hatibûne dayîn.

Li vir behsa redkirin yan jî erêkirina selahiyeta berendaman ji aliyê Komara Îslamî ve nayê kirin. Lê belê behsa baykotê û beşdarînekirin di proseya dengdanê de germtir e. Opozîsyona Îranî jî, ji ya Kurdan cuda ye. Hin ji wan baykota hilbijartinan dikin, hinek bêdeng in û hin jî beşdar dibin. Lê partiyên Kurdî yên Rojhilat, dengekî cuda hene. Ew ji serdema Dr. Ebdulrehman Qasimlû ve ku ji aliyê Komara Îslamî ve hate terorkirin, hemû hilbijartinan baykot dikin. Herî dawî şeş partiyên Rojhilat bêyî tevlîkirina PJAK'ê di daxuyaniya xwe de di derbarê hilbijartinên serokomarî û encûmena gund û bajarên Îranê de biryara boykotkirinê dan. Wan aliyan ragihandin ji ber ku ev hilbijartin di rewşeke xeyrî demokratîk û ne azad de têne lidarxistin, ewê wan boykot bikin. Ew dibêjin ne di hilbijartinên gund û bajaran de û ne jî di ya serokkomariyê de, berendam bi şêweyek demokratîk neketine holê ji ber ku selahiyeta kesên dijberî Komara Îslamî tê redkirin. Her wiha ew aliyan ji Kurdên wî perçeyî jî xwestin ku roja hilbijartinên wî welatî neçin ser sindoqan û dengê xwe





bi kar neyinin. Ew şeş alî, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê (PDK-Î), Partiya Komunîst a Kurdistana Îranê, Komeleya Zehmetkêşanên Kurdistanê, Hizba Demokrat a Kurdistanê (HDK), Komeleya Şoreşger a Zehmetkêşanên Kurdistana Îranê û Komele-Rêxistina Kurdistanê ne.

Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê PJAK di hember de dibêje bi sedan şervanên wan ji bo demokratîzekirina Îranê canê xwe dane û mafê wan jî heye tevlî proseya siyasî li Rojhilat bibin. PJAK'ê hêj hilbijartin baykot nekirine lê ragihandiye eger Îran derfetê ji bo guhertinan pêk bîne ewê beşdar bibin. Lê dibêje pêwîst e xelk beşdarî hilbijartinên encumenên gund û bajaran bibin. Ji bo ku kesên ku kesên xwedî şiyan bibin rêveberên gund û bajaran. Lê ew şeş partiyên din dibêjin berendam ji fîlteran derbas bûne û ti yek ji wan serbixwe nîn in da ku bikaribin mirovên azadîxwaz yan jî demokrat bin.

Eger lixwekirina kincên Kurdî ji bo wan kesan tê qebûlkirin ku propagendeyê ji bo berendaman dikin, lê bi ti awayekî jî bo jina ku dixwast bi kincên Kurdî here Wezareta Navxwe da ku navê xwe weke berbijêr tomar bike, nayê qebûlkirin.

Derxistina stranên Kurdî di beşa mûzîka zanîngehan de nayê qebûlkirin, lê ji bo wan hunermendan qebûl kiriye ku bi stranên Kurdî propagendeyê ji bo berendamên hilbijartinan dikin.

Partiyên ku ev hilbijartin boykot kirine, didin xuyakirin ku tekane rê ji bo demokratbûna Îranê û gihiştina Kurdan bi mafên xwe, guhertina sîstema Îranê ye û li gora ku ew dibêjin, di yasaya bingehîn ya wî welatî de ne mafê jinan parastî ye, ne yê karkeran, ne jî ol û neteweyên cuda. Ew dibêjin eger em libenda guhertineke bingehîn di çarçoveya Komara Îslamî de bin, dişibe kesê ku li ser kaniyeke hişk û zuha, li benda avê ye.

## Di nava hefteyekî de rêjeya mafparêziya Îranê

Hêzên ewlekariyê yên Komara Îslamî li bajarê Nexedê yê ser bi parêzgeha Urmiyê ve çar ciwanên xelkê wî bajarî bi navên Kiyan Kerîmî kurê Hadî, Kiyan Urame kurê Seîd, Mihemed Xebîcî kurê Elî û Riza Sofî Ehmedî kurê Sadiq di rojên berî Newroza 2017'an de binçav kirin ku heya niha jî dosyeya wan nediyar e û ew nikarin parêzer ji xwe re bigirin. Wê demê ew, bêyî nîşandana belgeyên yasayî ji aliyê hêzên han ve hatibûn girtin. Propagande ji bo partiyên Kurdî, sedema girtina wan çar ciwanên Kurd bûye.

Di hefteya sêyem ya vê mehê de hêzên ewlehiyê yên Îranê li parêzgeha Kirmaşanê herî kêm 5 welatiyên Kurd bi navên Ferîd Ehmedî, Erselan Ehmedî, Soran Ehmedî, Dilsoz Mihemedî û Cuneyd Hîdayetî binçav kirine. Girtina wan bi tometên siyasî û ji aliyê Sipaya Pasdaran ve hatiye encamdan û ew ji bo girtîgeha Kirmaşanê hatine veguhestin.

Girtiyekî Kurd bi navê Şoriş Moradî kurê Ehmed, bi tawanên kuştin û diziyê li girtîgeha bajarê Sinê, piştî ku 7 salan di girtîgehê de bê lêpirsîn yan jî darezandin hatibû ragirtin, bê hebûna belgeyên pêwîst bi darvekirinê hate mehkûmkirin. Hikma wî di heyamên derbasbûyî de derketiye.

Li Merîwanê ji ber pîskirina jîngehê ji aliyê şaredariyê ve, çalakvanan xwepêşandan kirin ku di encamê de 10 kes hatin girtin û piştre bi danîna kefaletê hatin berdan.

Sê welatiyên bajarê Dêhloranê li parêzgeha Îlamê, ji aliyê Dezgeha Dadweriya wî bajarî ve bi hêceta ku ji jinan re pirsgirêk derxistine û malên xelkê dizîne rastî bêrêziyê hatin. Ew sê kes, di demekê de ku mesîne kiribûn stûyên wan de, li nava bajar dihatin gerandin.





Nûçegihaniya Mêhr a hikûmetê jî, ji zarê hêzên ewlehî ve ew nûçe piştrast kiribû.

Du çalakvanên xelkê Rojhilatê Kurdistanê bi navên Secad Cehanferd û Hesen Belede piştî derbasbûna sê mehan di ser girtina wan de, li Tirkiyê hatin azadkirin. Cehanferd û Balade ku xelkê parêzgeha Kirmaşanê ne, ji bo karê lêkolînê û berdewamkirina xwendina xwe, li ser daxwaza çend nivîskarên Kurd yên Bakûrê Kurdistanê çûbûn Tirkiyê. Girtina wan bi tometên siyasî bû.

Li bajarê Kirmaşan, 2 kurdên Yarsanî bi navên Mehdî û Ihsan Fizûnî piştî ku ji girtîgehê hatin berdan, dawî bi jiyana xwe anîn. Bûyer, heftiya berê çê bû ku tê de wan du birayan li hemberî zulm û zora komara îslamî ya Îranê li hemberî oldarên Yarsanî xwe şewitandin.

Kolberekî xelkê gundê Jîwar yê bi ser bajarê Sewlawa li parêzgeha Sine, bi navê Nezîr Edak dema ku ji ber êrîşa hêzên sersînor direviya, ji zinarekî kete xwar û jiyana xwe ji dest da.

Pasdarên Îranê di nav axa Başûrê Kurdistanê de li devera Dûpeze ya Qeladizê êrîşî ser kolberên Rojhilatî kirin û di encamê de herî kêm 3 kolber hatin kuştin û gelek kolber jî birîndar bûn. Heman rojê li Serdeştê jî kolberek bi navê Ehmed Mamqadirî hate kuştin û 6 jî birîndar bûn.

> Li Merîwanê ji ber pîskirina jîngehê ji aliyê şaredariyê ve, çalakvanan xwepêşandan kirin ku di encamê de 10 kes hatin girtin û piştre bi danîna kefaletê hatin berdan.

## Piştî ‘Mertala Firadê’

# Armanca nû Rojava ye?





MURAT ÖZDEMİR

**TIRKIYÊ**, piştî ‘Mertala Firadê’ li dijî Rojavayê Kurdistanê destwerdaneke din pêkanî. Artêşa Tirkiyê ku ev heyamake dirêj e sewqiyateke mezin bo sînorê Rojava dike, roja 25’ê Nîsanê baregehên hêzên Kurdî yên li Dêrika Rojava û Şengalê bordûman kirin.

Destwerdanên Artêşa Tirkiyê yên li dijî Rojava dijwartir bûn. Artêşa Tirkiyê piştî ‘Mertala Firadê’ ku di Tebaxa 2016’an de dest pê kiribû û di 30’ê Adara 2017’an de dawî bûbû, di nava sînorên Rojava de û li Şengalê operasyonên asmanî pêk anîn. Herdu deverên ku bûne armancên êrişên balafirên Tirkiyê Rojavayê Kurdistanê û Herêma Kurdistanê bi hev ve girêdidin û xwedî girîngiyek stratejîk in. Di bordûmana Artêşa Tirkiyê ya li Dêrikê li dijî Çiyayê Qereçoxê de Navenda Ragihandinê ya YPG, avahiya Radyoya Dengê Rojava, çapxane û saziyên leşkerî hatin hedefgirtin. Di êrişa li ser Çiyayê Şengalê de jî baregehên hêzên Yekîneyên Berxwedana Şengalê (YBŞ) ku girêdayî PKK ne, bûn armanc. Artêşa Tirkiyê li dijî herdu cihan jî zêdetirî 20 firokeyên şer operasyon pêkanî.

Operasyonên Tirkiyê yên li ser Qereçox û Şengalê di herêm û cîhanê de deng veda û piştî operasyonan helwest û bertekên DYA û Rûsyayê ku YPG di herêmê de bo xwe weke hevalbend dibînin bûn cihê niqaşan. Ji van herdu hêzan DYA, li herêmê baregehên leşkerî vekirine, bi YPG re tevdigere û tevî hemû daxwaz û zextên Tirkiyê jî wê operasyona rizgarkirina Reqayê ligel hêzên HSD ku YPG pêşengiya wê dike, bi rêve bibe.Helwesta Rûsyayê ya li hemberî YPG ji DYA ne cihêtir e û ew YPG bo xwe weke mutefîk dibîne û herî dawîn jî li Efrînê baregeha xwe ya leşkerî vekir û dest bi perwerdeya hêzên Kurdî kir. Lêbelê tevî vê hevkarî û şirîkatiya zilhêzên cîhanê ya li gel YPG jî, Tirkiyê di nav sînorên Rojava de baregehên YPG bordûman kirin û ev operasyona Tirkiyê û helwesta hêzên hevpeyman tên nîqaşkirin. Jiber ku tê diyarkirin Tirkiyê bêyî destûr û razîbûna hêzên hevpeyman, DYA û Rûsyayê, nikare operasyoneke bi vî rengî li dijî YPG pêk bîne. Li hêla din piştî bordûmana Artêşa Tirkiyê pevçûnên dijwar di navbera Artêşa Tirkiyê û YPG de li seranserê sînorê Rojava qewimîn û di nevbera her du aliyan de pevçûnên dijwar rûdan.

**Çima Şengal?**

Şengal di nav sînorên Herêma Kurdistanê de cih digire û herêmeke stratejîk e ku Rojavayê Kurdistanê û Herêma Kurdistanê bi hev ve girêdide. Hêzên PKK jî ku piştî êrişên DAIŞê yên li ser herêmê hatin û li Şengalê bicih bûbûn, tevî hemû hişyariyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê û daxwazên xelkê deverê jî ji bajêr derneketin û rêxistinên leşkerî ava kirin. Herêma Kurdistanê ji bo avadankirin û asayîşa deverê dixwaze hêzên PKK ji Şengalê derkevin. Lêbelê PKK hê jî li Şengalê ye û Tirkiyê bi hinceta hebûna PKK, li dijî Şengalê operasyon pêkanîn. Wezareta Pêşmerge ragihand ku di encama bordûmanan de 6 Pêşmergeyan canê xwe ji dest dane û 9 Pêşmerge jî birîndar bûne û her wiha hat aşkerekirin ku bordûmana firokeyên Tirkiyê nayê qebûlkirin û bordûman bi sedema hebûna PKK ya li herêmê qewimîne. Berdevkê YPG Rêdûr Xelîl jî di derbarê bordûmana li ser Qereçoxê de ragihand ku di êrişan de 20 şervanên YPG canê xwe ji dest dane û 3 jê giran 18 şervan jî birîndar bûne.

Li hêla din DYA û Rûsyayê jî helwestên xwe yên di derbarê operasyonên Tirkiyê de aşkere kirin. DYA diyar kir ku van êrişan napejirînin û Tirkiyê ew gelek ‘dereng’ agahdar kirine. Rûsyayê jî destnîşan kir ku êrişên Tirkiyê yên li ser Rojava nayên qebûlkirin.

**Erdoğan:Me agahdar kirin**

Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan derbarê operasyonan de ji Reutersê re axivî û diyar kir ku wan beriya operasyonan Moskow, Washington û Hewlêr agahdar kirine û wiha pê de çû: “Operasyon bi ti awayî ne li dijî Pêşmerge bûn. Me ev ji Birêz Barzanî re ragihand. Ziyana canî û birîndarbûna Pêşergeyan em êşandin. Em destûr nadin ku Şengal bibe Qendîla duyem. Operasyon dê berdewam bikin.”

**Muslim: Bêyî hevpeymanê firokeyên Tirkiyê nikarin bifirin**

Hevserokê PYD Salih Mislim, him bang li hevpeymana navdewletî kir û him jî dilgiraniya xwe anî ziman. Mislim diyar kir ku divê hêzên hevpeyman ji êrişên Tirkiyê re bêdeng nemînin û ragihand: “Miletekî ku şerê terorê dike, ji paş ve tê kêrkirin.” Mislim herwiha destnîşan kir ku ji ber sewqiyata hêzên Tirkiyê bo ser sînor, wan çaverêya êrişeke bi vî rengî dikir.

**ENKSê bordûmanên Tirkiyê şermezar kirin**

Encûmena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS ) bordûmanên Tirkiyê yên li ser Şengal û Qereçoxê şermezar kirin û daxwaz ji PYD kir ku pêdaçûnekê bi siyaseta xwe de bike. ENKS herwiha daxwaz li PKK kir ku ji Şengalê derkeve û hincetan bo bordûmanên Tirkiyê çêneke û bang li PKK û Tirkiyê kir ku vegerin ser masa diyalogê.”

**Leşkerên DYAyê li Qereçoxê lêkolîn kirin**

Şêwirmend û leşkerên DYA yên li Rojava jî piştî êrişên asmanî yên Tirkiyê çûn cihê bûyerê û li wir lêkolîn kirin. Leşkerên DYA ji aliyê girseyeke mezin ve hatin pêşwazîkirin û ligel şervanênYPG li Qereçoxê li cihê bordûmanê lêkolîn û hevdîtin pêk anîn.

**DYA hêzên xwe li ser sînor bicihkirin**

Piştî bombebarana Tirkiyê ya li ser Şengal û Rojava û pevçûnên li ser seranserê sînorê Bakur û Rojavayê Kurdistanê, DYA leşker û wesayîtên zirxî li ser sînorê Rojava bicihkirin. Hat ragihandin ku DYA ji bo ku pêşiyê li pevçûnên Artêşa Tirkiyê û YPG ku van heyamên dawiyê berfireh û dijwar bûne, bigire hêzên xwe li ser sînor bicih kirine. Her wiha hat ragihandin ku ji Kobanê heta Qamişloyê hêzên amerîkî hatine bicihkirin.

## Berkel: Tirkiye dixwaze berê HSDê bide ser sînor



Cîgirê Serkwezîrê Kobanê Xalîd Berkel li ser êriş û geşedanên dawîn ji Basê re axivî. Berkel destnîşan dike ku ew bi çavê neyartî li Tirkiyê nanêrin û dibêje: “Derbaskirina sînoran, dagirkirina Rojava, binpêkirina yasayên navdewletî, bombebaran, bêrêzî û dijminatiya Tirkiye dike, xizmetê ji berjewendiya aştiya herêmê re nakin” Berkel di derbarê helwesta Rusya û DYA jî radigihîne ku her du hêzan jî li dijî êrişên Tirkiyê nerazîbûnên xwe anîne ziman. Berkel li ser daxwaza ‘Qedexekirina esmanê Rojava ji firokeyan re’ de jî dibêje ku hemû pêkhateyên heremê vê yekê daxwaz dikin û diyar dike ku divê civaka navdewletî Rojava biparêze. Ev êriş dikevin xizmeta çeteyan û Tirkiye diwaze berê HSD bide ser sînor.”

## “Daxwaz, ‘herêma ji firînê re qedexekirî’ ye”



Rojnameger Amîna Mesto ku geşadan û rûdanên li herêmê ji nêz ve dişopîne ji Basê re axivî. Mesto ragihand ku Artêşa Tirkiyê piştî bordûmê jî gund û baregehên YPG topbaran kir û xwast ku bi tankan sînor derbas bike. Rojnameger Mesto axaftina xwe wiha domand: “Tirkiye tevî sewqiyateke mezin gund û baregehên YPG topbaran dike û piştî bersivdayîna YPG pevçûnên dijwar rûdidin. YPG acizî û dilgiraniya xwe ji hêzên hevpeyman re aşkere kir. Jiber ku hêzên hevpeyman YPG bo xwe weke şirîkekê dibînin. Lêbelê ji êrişan re bêdeng man. Li gor agahiyên berdest piştî hevdîtinan hêzên hevpeyman soz dane ku ew ê êrişên Tirkiyê bidin sekinandin. Rêveberiya Rojava jî û xelk jî daxwaza wan ew e ku asmanê Rojava ji firînê re bê girtin û qedexekirin.

HOŞENG OSÊ

## Hinek rexne û têbînî



Di despêka heyva nîsanê de, min serdana Herêma Kurdistanê kir da beşdarî pêşengeha pirtûkan bibim û romana xwe ya yekemîn mor bikim. Min gelek dost û hevalên hêja û dilsoz dîtin û di derbarê gelek mijaran de axivîn. Mijara sereke, rewşa Kurdistanê, referandûm û serxwebûna Kurdistanê bûn. Di 11ê nîsanê de semînereke min li Zankoya Zaxo hebû, beşê dîrokê amade kiribû. Semîner bi sernivîsa “Gelo Stratejiya Serxwebûna Kurdistanê xwe Dispêre çi Xal û Bingehan?” bû. Naverok û xalên sereke yên vê semînerê ev bûn:

1 - Rewşên herî guncaw û baş ji bo damezirandin û “îlan”kirina dewletan ew e rewşên ne guncaw, ne baş, awarte û tevlihev in. Mînak, pirraniya dewletan di demê şerê cîhanê yê yekemîn û duyemîn de avabûne. Dewleta herî dawî di rojhilata navîn de hatiye îlan kirin Îsraîl e ku di 1948an de bû. Hêjayî gotinê ye ku tevgera “Sîyûnizmê” di 1897an de kongreya xwe ya yekemîn lidarxist û plana avakirina dewletê danî û di sala 1917an de soza avakirina dewletê ji wezîrê karê derve yê Brîtaniya Arthur James Balfour stend. Ango qonaxa avakirina Îsraîlê 51 sal dewam kir (1897-1948).

2 - Eger Serkirdeya Herêma Kurdistanê di pêvajoya serxwenbûnê de birastî cidî ne, divê stiratejiyeke zelal, tekûz û rêk û pêk li cem wan hebe, bi disipilîn û bê dudilî li gorî wê bimeşin. Ev stiratejî divê li ser sê ast û radeyan be: Rewşa hundirîn, rewşa herêmî û rewşa navnetewî. Ya herî girîng, divê maf û mijara serxwebûna Kurdistanê êdî nebe babeta gefxwarinan. Ango Birêz M. Barzanî ne bêje: “Em ê serxewbûnê îlan bikin” û piştre ji gotina xwe paş vekişe. yan jî M. Barzanî tiştek bêje û N. Barzanî tiştekî din ê nakok bêje.

3 - Li ser asta hundirîn: Gelo Hikûmeta Kurdistanê di warê geşkirin û serbixwe kirina aboriya herêmê ka çi planên aborî hene? Divê were jibîrkirin ku petrol û gaza Kurdan heye û çavkaniyên din yên aboriyê werin peyda kirin, weke: Bac, hilbirîna giran, torîzim, bank... hwd. Eger aboriyeke serbixwe nebe, siyasteke serbixwe jî çênabe. Divê tu carî neyê jibîr kirin ku têkoşîna li dijî gendeliyê gava herî girîng û pêwîst e di warê reform û çaksaziya ekonomî û rêvebirinê de. Gendelî, gendelî, gendelî..., divê hemû çavkanî û jêderên gendeliyê werin zuha kirin.

4 - Ez nizanim bê çiqas pere û dirav di warê ragihandinê de tê terxan û xerc kirin, lê heta niha navendeke lêkonlînên stiratejîk a Kurdistanê li derveyî Kurdistanê, nîne. Divê navendên lêkolînan yên taybet ji bo şopandin û nirxandina rewşa Tirkiyê hebin. Her wisa ji bo Îranê jî û ji bo welatên Ereb jî (welatên kendavê, Misir, Fas... hwd) divê hebin. Lê mixabin tiştekî wisa nîne. Belkî tenê rojnama “Bas”ê yekemîn saziya ragihandin û medya Kurdistana Iraqê ye ku li derveyî Kurdistanê tê çap û belav kirin.

5 - Li ser asta herêmî: Divê civîn û konferansên berfireh li Tirkiyê di gel siyasetmedar, rewşenbîr, nivîskar, akademîsyen, karsaz...hwd yên Tirk li Anqerê, Stenbol, Îzmîr û Amedê, di bin banê diruşmeya ku “Serxwebûna Kurdistanê berjewendiya Tirkan e bêhtir ku ya Kurdan be”, werin li dar xistin. Divê muxateb ne AKPe û cemawerên wê bin, lê CHP, HDP partiyên din bin. Ango muxateb ne aliyên ku êdî nerm bûne û serxwebûna Kurdistanê qebûl dikin, lê yên ku heta niha, hîna hişk û sert û li dij in.

6 - Kongre û konferansên bi vî rengî û bî vê mebest û armancê, li welatên kendavê yên Ereb jî (Dubay, Qatar, Sûdiye, Kiweyt, Uman û Bahrayin) û li Misir û Fasê divê werin li dar xistin, da ku baweriyeke tekûz li cem wan çê bibe ku serxwebûna Kurdistanê, ji Kurdan bêhtir, dê di xizmeta wan de be.

7 - Li ser asta navnetewî: Hemû partî û rêxistinên Kurdistana Iraqê, nemaze PDK, YNK, Goran..., li Amerîka û Europa divê di nava rewşa alarm û seferberiyê de bin û her hefte li paytextên girîng, meş û mitîngan li dar bixin. Zêdetirî 2 milyon Kurdên Iraqê li Amerîka û Europa hene divê werin livandin. Hemû partî divê hesab ji berpirs û endamên xwe yên li Amerîka û Europa bixwazin. Hikûmeta Herêma Kurdistanê, hesab ji nûnertiyên xwe yên li Brûksel, Waşînton, Berlîn... hwd, bixwaze û wan dehfde nava kar, xebat, liv û tevgerên cemawerî, siyasî û diplomasî.

8 - Li avahiyên parlementoya Europa, Amerîka û welatên din divê civîn û konferans werin li dar xistin. Serxwebûna Kurdistanê gerek bibe mijar û rojeva sereke ya medya Amerîka û Europa û birêz M. Barzanî her hefte bibe mêvanê yek ji TVyên navdar yên USA û EU. Divê nivîs û gotar li ser sûdeyên Serxwebûna Kurdistanê di hemû rojname û kovarên sereke û navdar yên USA û EU de, her hefte, werin belav kirin. Di warê sînema û fîlim dokumenterê direj de li ser tirajediya Kurdan a Enfal û Şingalê weke Holokosta li dijî Kurdan were nîşandan û li cîhanê were belav kirin. Hikûmeta Kurdistanê di gel fîrma û şirketên navnetewî yan tekiliyên giştî û gelemperî, derbarê propagendeya Serxwebûna Kurdistanê, divê kontrat omr bike.

Ev kurte pilan, eger serê sedî 60 ji wê pêk bê, dê deskeftên baş werin bi destxistin û raya giştî ya cîhanê digel Serxwebûna Kurdistanê be.

# Pêwendiyên Tirkiyê û YE li ser xeta start û stopê dilîzin



DERYA KILIÇ

**PÊWENDIYÊN** Tirkiyê û Yekîtiya Ewropayê (YE) piştî 13 salan ketiye rewşa herî xerab. Tirkiyê bi awayekî fermî 58 in sal in hewl dide ku bibe endamê YE. Di deshilatiya AK Partiyê de ji bo endambûna YE, gelek gotûbêj hatin kirin û ji bo ahengiya yaseyên YE gelek qanûn hatin guhertin û di heman demê de Tirkiyê ji bo endambûnê gelek pêş ketibû. Heta ji bo Peymana Şûndevegerandinê, hindik mabû ku di navbera her du aliyan de vîze bên rakirin. Lê Rewşa Awarte (OHAL), aloziya bi Hollandeyê re, li ser şibandina 'Nazî' aciziya Almayayê, referanduma 16 Nîsanê, pişt re daxuyaniyên li ser îdamê û rapora Meclîsa Parlameterên Konseya Ewropayê (MPKE) ya li ser Tirkiyê pêwendî ber bi têkçûnê ve birin.

YE ji bo çareserkirina kêşeya penaberan bi Tirkiyê re gelek gotûbêj kirin û ji bo rakirina vîze û endambûnê gelek piştevaniya dabû. Di serdema Serokwezîrê Berê Ahmet Davutoğlu de li gor encama hevdîtinan de dê vîze bihata rakirin. Pişt re gotûbêj heta 2016'an berdewam kirin û her du aliyan li ser peymana penaberan û rakirina vîzeyan li hev kirin. Lewra di meha Adara 2016'an de ji bo vegerandina penbaran, Tirkiyê Peymana Şûndevegerandinê îmze kir û YE 72 krîter danîn pêş. Tirkiyê ji 72 şertan 65 bi cî anîn. Lêbelê ew xalên li ser Yaseya Têkoşîna li dijî Terorê neguhert û YE jî vîze ranekir.

### Tirkiyê yekemîn welatê ku vegeriyaye xêza 'startê' ye

Heger em li demên dawiyê binêrin; Lijneya Giştî yê MPKE piştî 16'ê Nîsanê û rapora AGÎT di Sêşemiya 25'ê Nîsanê de civînek li dar xist û derbarê Tirkiyê de biryarek da ku weke bibêj 'nebû, ji nû ve dest pê bike.' Tirkiyê herî dawî di sala 2004'an de ji kontrolkirinê hatibû derxistin û ji nû ve dê were kontrol kirin. MPKE bi sedema ku li Tirkiyê mafên mirovan tên bin pê kirin û rejim ber bi deshilartdarbûnê ve diçe, ev biryar hat girtin û bi vî awayî hewlên 13 salan vala çûn.

### Rayedarên Tirk aciz in

Rayedarên Tirk piştî vê biryarê demildest nerazîbûnên xwe nîşan dan. Serokwezîr Binali Yıldırım da zanîn ku hewce ye YE derbarê endambûna Tirkiyê de êdî biryarekê bide û divê vê tevlibûnê jî çareser bike. Wezîrê Ewropayê Ömer Çelik ev biryar weke 'xeletiyeke dîrokî' nirxand. Şêwirmendê Sereke yê Serokkomar Bülent Gedikli biryara MPKEyê weke 'Operasyona siyasî' bi nav kir û Berdevkê Serokkomar İbrahim Kalın jî derbarê biryarê de wisa got: "Bi awayekî aşkere ev operasyoneke siyasî ye'



Pêwendiyên Tirkiyê û Yekîtiya Ewropayê(YE) piştî 13 salan dîsa bû weke berê. Tirkiyê welatê yekemîn e ku ji kontrolkirinê tê derxistin û dîsa dê were kontrol kirin. Tevî vê, Akademiseyenê Zanîngeha Sakaryayê Zana Baykal di axaftina xwe ya Basê de diyar kir ku ji ber penaberên li Tirkiyê û Peymana Şûndevegerandinê, Tirkiyê ji bo YE girîng e û ji ber vê jî dê YE pêwendiyan ranewestine.

### "Li ba Tirkiyê her tim tirsa qebûlnekirina YE heye"

Akademisyenê Zanîngeha Sakaryayê, Zana Baykal rûdanên dawî yên YE û Tirkiyê ji Heftenameya Basê re nirxand û destnîşaniya du kêşeyan kir û wisa pê de çû: "Ya yekemîn kêşeya penaberan e û ya duyem ew e ku Tirkiyê ev demeke dirêj e hewl dide ku bibe endamê YE. Di kêşeya penaberan de piştî gotûbêjan sîstemek hat çêkirin. Lêbelê ya duyem demeke dirêj e berdewam dike û dawiya wê jî nediyar e. Li ba Tirkiyê hertim tirsa qebûlnekirina YE heye û YE jî bi ti awayî endamtiya Tirkiyê qebûl nake. Ev ji hev bawernebûn, popîlîstên rastgir ê Ewropa dema ku bi gotinên li dijî Tirkiyê tên gotin ketin ser hev, pêwendî bêhtir xerab bûn."

Baykal bal kişand ser Yaseya Têkoşîna li dijî Terorê û Peymena Şûndevegerandinê û axaftina xwe wisa domand: "Tirkiyê di derbarê Yaseya Têkoşîna li dijî Terorê de, ku guhertin ji Tirkiyê dihat xwastin, red kirin û ev şert bi cî neanî. Ji ber ku Tirkiyê difikirî ku ev guhertin dê zerarê bide têkoşîna li dijî terorê. Bi ihtimaleke mezin jî dê neguhere. Welew ku piştî hewldana darbeyê kes nikare li benda vê guhertinê be. Tirkiyê bêyî vê guhertinê dixwaze û hewl dide ku vîze bên rakirin. Peymana Şûndevegerandinê ji meha Hazîrana 2016'an de berdewam dike û encamên êrenî tên bi dest xistin. Ev ji bo Tirkiyê avantajeke mezin e û gelek girîng e. Ez bawer nakim ku Tirkiyê dê vê peymanê betal bike û vê avantaja xwe têk bibe. YE bi xêra vê peymanê nefeseke rihet girt û hîn jî bi kar tîne. Ez difikirim ku YE ji bo peyman têk neçe, dê bi awayekî mentiqî tevbigere."

Baykal derbarê rawestandina têkîliyan de jî axivî û aşkere kir ku ev gotin bi awayekî hêrs hatine gotin. Ne Tirkiyê û ne jî YE dev ji hevûdu bernadin. Pêwendiyên YE û Tirkiyê di serdema xwe ya herî xerab de ye. Dê biryara aliyan siberoja pêwendiyan diyar bike.



## Biryara rawestandinê li EP bû sedema gengeşiyan

Parlamentoya Ewropayê (PE) derbarê pêwendiyên YE û Tirkiyê de civînek li dar xist û di civînê de referandûm, pêwendiyên her du aliyan û îdam hat nirxandin û dan zanîn ku derbarê van mijaran de gelek endîşeyên wan hene. Ji ber mijara rawestandina pêwendiyan PE bû çend beşan.

Hin endamên PE xwastin ku pêwendiyên Tirkiyê û YE ji nû ve bên nirxandin û bila serdemeke nû dest pê bike. Bila Peymana Gumrikê bê nûkirin û di warê bazirganî, pevguhertina xwendekaran, ewlehî û koçberiyê de zêdetir hevkarî bên kirin û planeke din bê çêkirin.

Hin endamên PE xwastin ku prosesa endambûnê bê rawestandin; hinekan jî aşkere kirin ku heta Tirkiyê polîtîkayên xwe guherandine gotûbêj bên rawestandin.

Endamê Komîsyona YE yê Berpirsyarê Berbelavbûnê, Johannes Hahn di civînê de da zanîn ku pêwendiyên YE û Tirkiyê di civîna ku dê li Maltayê bê li dar xistin de, di civîna Wezirên Derve yê Nefermî yên YE de bên nirxandin.

Raportora PE ya Tirkiyê Katî Pîrî diyar kir ku destûra bingehîn a ku di refrandumê de hatiye qebûl kirin 'otorîter' e. Heger destûra bingehîn bi vî awayî bê qebûl kirin, ti wateya berdewamkirina gotûbêjan tune ye.

Her wiha PE bangawaziya Konseya Ewropayê (KE) kir ku ji bo Tirkiyê lûtkeyekê li dar bixin.

Serokwezira Almayayê Angela Merkel biryara MPKE û rapora AGÎT di Parlamentoya Federal a Almanyayê de nirxand û ragihand ku divê Tirkiyê biryara MPKE li berçavan bigire.





JAN DOST

## Aştî li ber nigê şerxwazan diçe

Rûdanên vê dawiyê, anku bombardumankirina Qereçoka li Rojavayê Kurdistanê û Şingala li Herêma Kurdistanê, mîxê dawî di darbesta aştiyê de kutandin.

Piştî ku serokkomarê Tirkiyeyê Recep Tayip Erdoğan di referandûmê de bi serket, her kes li bendê bû ku pêvajoya aştiyê ya rawestiyayî li Tirkiyeyê û bakurê Kurdistanê dîsa bikeve rojevê û bi awayekî xurttir dest pê bike.

Lê firokeyên şer yên artêşa tirk, berîbeyana roja sêşemê 25 Gulanê girtin ser çend nuqteyên leşkerî yên YPG û di encamê de gelek şervanên YPG û pêşmergeyan jî jiyana xwe ji dest dan.

Vê êrîşa ji nişkêve derfetên pêvajoya aştiyê bi yekcarî kêm kirin.

Bi dîtina min ev tevger ji aliyekî de dixwaze hêza kurdan li Sûriyê qels bike, ji aliyê din ve dixwaze astengiyan li ber referandûma serxwebûna Kurdistanê deyne. Ji bo ku kurd bikaribin ji vê qonaxê derbasî qonaxa serxwebûnê bibin çi pêwist e?

Bi dîtina min niha ji her demê bêhtir lihevkirina hêzên kurdan xwesteka gel hemûyî ye. Divê bi lez û lezgîn kurd li hevdu bicivin, nakokiyên xwe bidin aliyekî û stratejiya xwe bikin yek. Ji bo vê yekê jî PKK divê hin gavên dîrokî bavêje ku behaneya êrîşan rawestîne. Gava yekem ew e ku hêzên çekdar ji Şingalê vekişîne û wê herêmê radestî hêza pêşmergeyên Herêma Kurdistanê bike, bi vî awayî behane ji dewleta tirk re namîn in ku her carê biçe herêmê bombarduman bike û sivîl û şervanan bikuje. Gava duyem divê PKK li rojavayê Kurdistanê jî nakokiyên kûr yên di navbera PYD û partiyên siyasî yên din de û bi taybetî PDK-S de rake. Wan hêzan bîne cem hev û li ser bingeha peymanên Hewlêr û Duhokê ji nû dest pê bikin. Rojavayê Kurdistanê bi awayekî kurdewarî ne ku „hizbewarî" bireve bibin. Divê PKK li pêşeroja Kurdistanê binêre ne li destkeftên demkî yên ku erê niha mezin e, lê di encamê de û bi demê re dê ji dest biçin. Pêşmergeyên Rojava divê êdî vegerin gund û bajarên xwe biparêzin. Qada wan ew e. mil li milê hev ew û YPG dikarin xurttir bibin. Di bin yek alê de, di siya yek fermandariyê de. Ev yek jî daxwazek gelêrî ye bêhtir ku hizbî be.

Li aliyê din ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî tê xwestin çend gavên dîrokî biavêje. Yek jê pêvajoya aştiyê ya ku di navbera PKK û dewleta tirk de heta astekê çûbû û paşê rawestiya bû dîsa vejîne. Divê zû bi zû Hikûmeta Herêma Kurdistanê tev bigere û rê li ber êrîşên pêşerojê ku bê guman dikarin tundtir bin bigre. Destê xwe bi destê aliyên aştîxwaz di nava PKK, HDP de û rêya xetimî ya çareseriyê dîsa vekin.

Bi nêrîna min ji her gavê bêhtir niha dema referandûma Serxwebûnê ye. Rewş li rojhilata navîn aloz û tevlihev e. şerekî dûr û dirêj heye li dijî terorê û li dijî rejîmên dîktator. Ku ev şer raweste êdî fersendên ku kurd doza mafan bikin, û li hêviya para xwe bimînin wê wek her carê ji dest herin. Di aloziyan de gavên mezin têne avêtin. Di aloziyan de bindest mafên xwe werdigrin lê ku aramî li dar bikeve û xelk tevde êdî ji şer şikestî û lawaz derketibin, wê demê kesên bindest ku ji hemiyan bêhtir westiyayî û şikestîne dê nikaribin doza tiştekî bikin. Hîn tiving di destê te de ye, mafê xwe pêk bîne, hîn tenûr germe nanê xwe pêvede yan na nanê te ê şikeva be.

Ez hêvî dikim ku reaksona PKK vê carê ne çalakiyên leşkerî yên li hindirê Kurdistana Bakur û Tirkiyeyê bin. Bi kuştina çend serbazan, bi teqandina otubusê serbazan, armanc pêknayên. Belkî mar hartir dibin ku teriyên wan birîndar dibin, loma jî divê reaksyon aram bin, dîplomatîk bin û bi aqil werin meydanê ku miletê me yê ji xwînrijandinê westiyayî, ji tofanek mezin were parastin.

Li Bakur

# Dema rêwîtiya jiyanên demkî



Wek hemû deverên cîhanê li Bakurê Kurdistanê jî bi milyanan xebatkarên cotkariyê hene. Ev xebatkar tev jî di bin asta hejariyê de dijîn û debara xwe jî nikarin bikin. Koçkirina ji Bakur ber bi Tirkiyeyê ve zehmetên mezin derdixe holê, bi taybetî jî ji bo zarokan ev koçberî pir zehmet e. Xebatkarên demkî yên Rihayî ku ji rojnameya me re axivîn derdê xwe wiha bi lêv dikin; 'Di bin şertên der mirovî de xebat û rêyên li bendava mirinê.' Xebatkarên demkî dixwazin li bajarên wan derfetên kar bên avakirin.

## Ji Tirkiye û Cîhanê jiyanên demkî

Li seranserê cîhanê ji milyarekî zêdetir xebatkarên cotkariyê hene. Ji van xebatkaran jî nêzîkî 450 mîlyonan xebatkarên demkî ne. Li herêma me jî her çiqas hejmara xebatkarên demkî ne zelal be jî bi milyonan e. Ji Bakurê Kurdistanê jî her sal bi hezaran kes ji bo xebata demkî ber bi bajarên Tirkiyeyê ve diçe. Zêdetirî 45 bajarên Tirkiyeyê karê berhevkirina zerzewat û fêkiyan tê kirin. Ji her du xebatkarên demkî yek jê ji zayîna xwe ve tim di rêwîtiya karê demkî de ye. Ji nêvî zêdetir xebatkarên demkî di şertên ne asayî de dijîn. Zarokên keçik yên xebatkarên demkî qet ruyê dibistanan nabînin. Xebata demkî ya cotkariyê xwedî rêjeya herî bilind e ku zarok tê de dixebitin.



CESÎM ÎLHAN

**BIRÎNA** bêderman a Bakurê Kurdistanê, xebatkariya demkî ya cotkariyê dest pê kir. Ji zarokên 2 mehî bigirin heta pîrekên 80 salî ji hemû nifşan mirov di qaseyên qamyonan de derdikevin rêya kar û ev rêwîtî geh li Çukurovaya Adanayê geh jî li bajarekî Deryaya Reş bi dawî dibe. Malbatên Kurd her sal ji Dîlok, Riha, Mêrdîn, Diyarbekir û gelek bajarên din ji bo debara xwe bikin ber bi herêmên Tirkiyeyê ve koç dikin. Zehmetî hê di rê de dest pê dike. Rêwîtiya bi trênan, qamyonan an jî mînîbusan gelek caran bi encama "Qezayekê" bidawî dibe. Bi pirranî di otobusên 12-14 kesî de 16-20 kes; vagonên 6 kesî de jî 9-10 kes siwar dibin û derdikevin ber bi rêwîtiyê ve. Her sal di encama qezayan de bi dehan xebatkarên demkî di vê rêwîtiyê de jiyana xwe ji dest didin. Di sala 2015'an de 190 xebatkar di van qezayan de jiyana xwe ji dest da. Piştî rêwîtiyeke zehmet digihîjin cîhê xwe lê zehmetî û kêşeyên wan zêdetir dibin. Di çadira de dimînin û ji bo 40-50 Lîrayê Tirkiyeyê rojane 14-15 saetan dixebitin.

**"Zarok ji perwerdehiya xwe bêpar dimînin"**

Bajarên ku herî zêde xebatkarên demkî jê bar dikin û ber bi bajarên Tirkiyeyê ve diçin yek jê jî Riha ye. Derfetên kar pir kêm in. Ji ber ku debar bi karê cotkariyê nabe, Kurd neçar in ku ber bi bajarên Tirkiyeyê ve koç bikin.

Yek ji xebatkarên demkî jî Mehmed Kara ye. Kara, tesîra xebatkarên demkî li herêmê wisa dinirxîne: "Mixabin li bajarên me derfetên kar nîn in. Niştecihên bajêr ji ber ku nikarin debara xwe li bajarên xwe bikin neçar dimînin koç bikin. Dema koçberiyê ye, ev koçberî gelek pirsgirêkan jî bi xwe re tîne. Ligel lehî û baranê, qezayên li ser rêya koçberiyê... Zarok ji perwerdehiya xwe bêpar dimînin. Em nizanin dê heta kengî ev pirsgirêk wê bi vî awayî dom bike. Daxwaza me ew e ku li bajarê me derfetên kar bêne avakirin."

**"Ji ber Kurdbûna me..."**

Xebatkarê Kurd Yavuz Duman destnîşan dike ku aloziyên siyasî û şer tesîr li wan dike. "Ji ber ku em Kurd in hin kes me naxebitînin, hin kes bi pereyekî erzan me dixebitînni û hin ji wan jî êrîşî me dikin"



Duman wiha destnîşan dike; Bi salan e em di heyvên biharê de ji mala xwe koçî bajarên Tirkiyeyê dikin û encax di heyvên zivistanê de vedigerin. Em bi malbatî karên demkî dikin. Li kîjan bajarî kar hebe em berê xwe didin wir. Em bi giştî karê pîvaz, mişmiş, pincar û daneheva findiqan dikin. Ji ber em zarokên xwe jî bi xwe re dibin, zarok ji xwendina xwe bêpar dimînin. Her wiha van salên dawî ji ber ku em Kurd in nêrîn û tevgera xwediyên kar li hember me guheriye. Heke ne neçarbûna em naxebitandin."

**15 Donim erdê min heye ez neçar diçim Amasyayê**

Rêwiyê rêya xebata demkî Ahmet Yatkinê ji gundê Horozê ye girêdayî navenda Rihayê ku debara xwe nikare ji cotkariyê derxe, berê xwe dide bajarên Tirkiyeyê destnîşan dike ku;

"15 donim erdê min heye û ez nikarim pê debara xwe bikim. Ez û bi hezaran yên mîna min di vê demsalê de berê xwe didin Amasyayê ji bo rojane 40-50 lîrayî. Koçberî qedera me ye, çareserî nîne. Riha kirin bajarê mezin lê ji bo me tu ronî xuya nake. Dîsa em di hejarî, belengazî û bi çavên kelogirî dijîn; dîsa rezîlî û koçberî para me ye. Zarokên di temenê dibistana seretayî de jî li Tirkiyeyê bi 20-25 lîrayan dixebitin. Vê rewşê Riha di warê perwerdehiyê de paş xistiye"

**Divê sozên hatin dayîn bi cîh bên**

Cotkarê Rihayî Çetîn Guçlu dibêje xebatkarên demkî tên paşguhkirin. Guçlu destnîşan dike ku ji bilî hateçûn û hewîna wan tunebûna ewlehiya civakî jî pirsgirêk e. Xebatkarên demkî tenê di dema hilbijartinan de dikevin rojeva siyaset û berpirsyaran. Mixabin wan sozên wan ku di demên hilbijartinan de didin me, piştî hilbijartinan jibîr dikin û diçin. Guçlu destnîşan dike, heger Dewlet veberhênanê li ser projeya GAPê bike dê pirsgirêkên me jî çareser bibin. Em neçar namînin ji warê xwe dûr bikevin. Xebatkarên demkî ku ji Basê re axivîn; Em daxwazê ji şaredariyan dikin pêdiviyên me yên sereke bi cîh bînin.

# Li Unkapaniya Stenbolê birincfiroşekî Kurd



DARAYÊ PORXELEK

**BIRINCFIROŞÊN** Stenbolê her şev kolan bi kolan digerin da ku birincê xwe bifiroşin. Bêşik hemû birincfiroş li ser erebokên sêtekel birincê xwe li kolanên Stenbolê digerînin û pê debara xwe dikin. Tenê yek ji wan birincfiroşan cûda ye ku ew jî birincfiroşê Unkapani ye û Kurdekî ji Nisêbîna Mêrdînê ye. Birincfiroşê navdar her şev di heman saetê de, li heman derê dezgeha xwe datîne û li benda kiroxên xwe disekine. Ew birincfiroşê Nisêbînî, li Stenbolê yê herî navdar e û di ereboka sêtekel de birincê xwe difiroşe. Li ser erebokê 10 kes dixebitin. Hemû xebatkar Nisêbînî ne û hin ji wan masterê dikin hin ji wan jî xwendekarê Zaningehê ne.

Yek ji xebatkarên birincfiroş jî Şukru ye. Şukru amaje pê dike ku beriya 20 salan yekem car birincê xwe li Çarşiya Manîfetûra û Qumaşfiroşan derxistine bazarê û rastî eleqeyeke mezin hatine. Şukru ji bo ji trafîqê re astengî dernekeve û li ser taleba zêde berê xwe dide nav Çarşiya Manîfatura û Qumaşfiroşan di dikanekê de karê xwe didomîne. Birincê xwe xwerû, bi nok an jî bi goştê mirîşkan serwîs dike. Tirşiya bîberan û ketçap ji ji aliyê gelek kiroxan ve tê xwastin ku ew jî lezzeteke cûda dide birincê. Beriya 5 salan tescîla merqa xwe standine. Bi navê xwe birincê xwe amade dikin û ji bilî dikan û ereboka xwe li devereke din nafiroşin. Hoste Hekîmê ku ev 20 sal in li karê birincfiroşiyê dike dibêje ku, ji her derdorê kiroxên me hene. Him dewlemendên Stenbolê him jî kedkar tên birincê me dixwin.







**Birincfiroşê xwandekarê zaningehê!**

Şukru li Zaningeha Anadoluyê beşa Civaknasiyê, di pola 2. de dixwîne. Him xwendina xwe didomîne him jî dixebite. Şukru radigihîne ku beriya 20 salan kekê wî û pismamê wî bi hev re hatine Stenbolê û yekem car wan dest bi firotina birincê kirine. Nêzîkî 15 salan e bi awayekî seyar karê xwe domandine û ev 5 sal in jî dikan vekirine. Lê piştî vekirina dikanê jî dev ji firotina seyar bernedane. Her roj saet 19.30'an de ereboka xwe dadixînin kolanê û li cîhê xwe li benda kiroxên xwe dimînin. Şukru amaje pê dike ku rojane 100 kilo birinc difiroşin. Bi roj li dikanê, êvarê jî li ser erebokê karê xwe dikin. Birincfiroşê navdar yê Unkapaniyê dibêje ku bir roj 10 kes bi şev jî 10 kes dixebite. Xebatkar hemû jî ji Nisêbînê ne.

> Şukru li Zaningeha Anadoluyê beşa Civaknasiyê, di pola 2. de dixwîne. Him xwendina xwe didomîne him jî dixebite. Şukru radigihîne ku beriya 20 salan kekê wî û pismamê wî bi hev re hatine Stenbolê û yekem car wan dest bi firotina birincê kirine.

Şukru bersiva pirsa me ya "Ji ber çi hemû birincfiroş ji Nisêbînê ne?" wiha dide: "Bi rastî jî em nikarin tiştekî rast û dirûst di vê mijarê de bilêv bikin. Lêbelê li gor texmîna min yên ku cara yekem ev kar kirine Nisêbînî bûne" Dema pismam û dostên wan hatine Stenbolê xwe spartine wan. Ji wan fêrî vî karî bûne piştre jî her yekî ji xwe re dezgehek vekiriye. Bi vî awayî jî hemû nas û pismam bûne birincfiroş. Birincfiroşên Stenbolê mirov dikare bibêje ku hemû Nisêbînî ne. Şukru dibêje ku; Li Stenbolê mirov bi taybetî ji bo xwarina birincê me têne vir.

Hoste Hekîm jî di derbarê karê xwe de wiha dibêje; Ev 20 sal in ez li vê derê dixebitim. Em ji bo kiroxên xwe birincê xwe bi taybetî amade dikin. Di nav ava goşt de em birincê çêdikin. Mişteriyên me elaqeyek mezin nîşanî birincê me didin. Ev 20 sal in me heman tehm pêşkeşî mişteriyên xwe kiriye.

**Birincfiroşê master dike!**

Xwediyê birincfiroşê navdar yê Unkapaniyê Metîn ji Basê re wiha dibêje: "Ev 10 sal in li Stenbolê me. Ji bo xwendina lîseyê hatim vê derê. Dema min lîse dixwend kekê min birincfiroşî dikir. Ez jî ji bo arî wî bikim dihatim ber dezgehê. Ev 10 sal in ez him dixwînim him jî karê xwe dikim. Niha jî li Zaningeha Stenbolê di beşa Dîrokê de Mastera xwe dikim. Di heman demê de kar û xebatên akademîk bi hev re dimeşînim.

**Xwarina birincê li ser ereboka sê tekel ciyawaz e**

Birincfiroşê navdar yê Unkapaniyê, rojên În û Şemiyê pir qelebalix e. Li ser ereboka sêtekel di saet 19:30'an de dest bi serwîsê dikin û heta serê sibê saet 07:30'an. Di rojê de 3 caran birinc diqede û ji nû ve tê dagirtin. Taybetmendiya birincê ji tezebûna wê tê. Birinc û rûnê wê ji malzemeyên biqalîte tê çêkirin. Şukru dibêje, "Birincê dikanê jî yê erebokê jî heman birinc e. Lêbelê mişterî erebokê ku li ser piya tê xwarin zaftir tercîh dikin ji ber ku ew bi xwe tehmeke ciyawaz e."

## Berê tenê birincfiroşê seyyar hebûn...

Ji bo xwarina Birincfiroşê Navdar yê Unkapaniyê mişterî ji her deverên Stenbolê tên Unkapaniyê. Di heman demên rojê de xwedî girseyek mezin e birincfiroş. Bi taybetî jî rojên betlanê pir qelebalix e. Nava hefteyî jî heta derengiya şevê mişterî xwe li xwaringehê digirin. Hewayekî samîmî û fireh dide mêvanê xwe Birincfiroşe Unkapaniyê. Ev jî dibe sedem ku mişterî xwe lê bigirin. Distûra birincfiroşê navdar tezebûn, memnûniyet û rehetiya mişteriyan e. Birincfiroşê Navdar yê Unkapaniyê birinc-dewmirîşk yê herî xweş pêşkeşî mişteriyê xwe dike.



## Kesên navdar jî tên

Yek ji sedemên navdarbûna Birincfiroşê Unkapaniyê jî Îbrahîm Tatlîses e ku şevekê piştî bernameya xwe berê xwe dide birincfiroş û li wir birincê dixwe. Ev dîmen ji aliyê rojnamegeran ve hatin kişandin û di çapemeniya Tirkiyeyê de belav bû. Piştî belavbûna van dîmenan Birincfiroşê Unkapaniyê jî navdartir dibe. Ji bilî Îbrahîm Tatlîses çend navdarên din jî li Birincfiroşê Unkapaniyê birinc dixwin. Birincfiroşê Unkapaniyê wek Birincfiroşê Navdar tê nasîn û nasîna wî her diçe zêdetir dibe.

Hunermend Derwêş Serhedî:

# Ez şagirtê gelê xwe me!




Derwêş Serhedî hunermendê Kurd nêzî çil salan e kedeke mezin dide muzîka Kurdî. Him stranên dengbêjî û him jî yên gelerî distre. Serhedî di heman demê de gelek amûrên muzîkê lêdixe û ji bo gelek hunermendên Kurd wek çavkaniya muzîka Kurdî ya gelerî tê binav kirin.

## "Di nav dengbêj û sazbendên Kurd de geriyam"

Herwiha Serhedî dibêje bi salan e ji ber bêderfetiyê tengasiyên mezin kişandine û wek hunermendên Kurd alîkariya hev kirine. Serhedî studyoyek amade kiriye û wiha behsa vê studyoyê dike, "Ev studyo ne bi tenê cihê min, cihê hemû hunermendan e. Armancake bazirganiyê tune ye! Min berhemên gelek hunermendan çêkirîne."

Hunermendê Kurd balê dikişîne ser pîvanên hunera klasîk jî û wiha dewam dike, "Roja îro gelek derfet hene. Saziyên me ên xwedî arşîvên mezin hene. Înternet heye. Bê xebat, weke xwarineke nepijyayî nabe. Hunera klasîk bi pîvan tê pêşkêşkirin. Bi pêşkêşkirineke beredayî nabe!"

Derwêş Serhedî di sala 1995'an de çûye Ermenîstan û Gurcistanê. Serhedî dibêje têkîliya wî bi civata Kurdên Sowyeta berê re qet qut nebûye û ew wisa behsa vê gera xwe dike, "Çûyîna min a cara yekem bû. Kâbe bo Misilmanan, Laleş bo Êzîdiyan, tê çi maneyê, Rewan û radyoya Rewanê jî ji bo min ew bû. Ez çûm lê tewaf bûm. Nava civata dengbêj û sazbendên Sovyeta berê geriyam. Wan ji bal me çûne. Xizneya hunera me bi xwe re birine û baş parastine, xweş kirine." Serhedî diyar dike ku wê di van rojan de, dîsa biçe Qazakîstanê.



GÖNÜL GÜN

"Ez gel im. Lawê gel im û ez ji nava gel perwerde bûm, şagirtê gel im" Derwêş Serhediyê Hunermendê Kurd ku ev nêzî çil salan e kedeke mezin daye muzîka Kurdî hestên xwe bi vî awayî tîne zimên. Derwêşê Serhedî, ji Qersê ye û ev bi qasî sih sal e li Almanyayê dijî û reng û awazên muzîka Serhedê mîna ku di xwe de civandibe bi dehan stranên dengbêjî û ên gelerî yên Serhedê straye û lewma xwediyê repertuareke dewlemend e! Di heman demê de hunermend Serhedî, ensturmantên mîna 'tembûr, mêy, zirne, balaban (dûdûk), fîq, erbane, bendir wk. Lêdixe. Em li ser navê Heftenameya Basê di derheq hunera Derwêş Serhedî û muzîka wî de bi wî re axivîn.

**"Li ber radyoya Rewanê û diwanên dengbêjan mezin bûme"**

Hunermend Derwêş Serhedî destnîşan dike ji ber ku derfetên mayîna wî a li welat nemabû di payiza sala 1987'an de, mîna her Kurdê penaber berê xwe daye Almanyayê. Ev sî sal e li wir dijî û hunera xwe pêk tîne. Gava ku em jiyana hunermend Serhedî dinêhêrin, di malbata wî de apê Serhedî dengbêj Rizayê Fetî tê zanîn û her wisa ew di nav malbateke muzîkhez û folklorhez de mezin bûye. Hunermend Serhedî, eleqeya xwe û muzîkê wisa tîne zimên, " Li ber radyoya Rewanê(Erîwan) û diwanên dengbêjan mezin bûme. Ne tenê apê min Rizayê Fetî her wiha min dengbêjekî weke Eçê (Esker Demirbaş) şopand. Van, ji bo min bûn wek zanîngeh, min diwanên wan dîtin"

Serhedî heta niha bi dehan him stranên dengbêjî him yên gelerî straye û ew wiha qala tûrîkê xwe yî muzîkê dike, "Ez pey qeşmeriyê neketim. Ez gel im. Lawê gel im, rih û hestên min gel e! Û ez ji nava gel perwerde bûm, şagirtê gel im. Her çi yê min heye ji min ji gel hilda û avête 'tûrê' xwe. Bila neyê wê maneyê ku tûrê min tijê ye. Naxêr! Lê di nava gel de xizne heye, behr heye. Min jî ji wê behrê ji xwe re çend dilop hildaye avêtiye tûrê xwe..."

**"Me ji 'rûsipî û porsipiyên' xwe hilda"**

Dema ku kasêtên Derwêş Serhedî yekem car bên guhdarî kirin, mirov gelek stranên Kurdan yên gelerî dibîne û bi saya wî gelek stran ji windabûnê xilasbûne. Serhedî dibêje, cihê stranên gelerî bo wî cuda ne û wiha pê de diçe, "Gotineke hunermendê Amerîkayê Latîn (Şîlî) Viktor Jara gelek xweş heye, dibêje; 'Ne ku dengê min xweş e ez ji van stranan dibêjim an jî ne ku ez ji van stranan hez dikim lewma dibêjim. Na, lazim e ku ev stran bêne gotin. Me ji 'rûsipî û porsipiyên' xwe hilda û êdî em ji dewrî yên li pey xwe dikin. Divê wisa be!"

Derwêş Serhedî gelek amûrên muzîkê jî lêdixe û wiha dibêje, "Hevalê kalikê min Apê Îbo bo min defeke şiş-çomaq çêkiribû. Ez pê wê dileyistim, ev amûra min a yekem bû. A duyem, tembûr bû. Min bi xwe tembûr çêkir. Paşê mêy, zirne, balaban (dûdûk), fiq, erbane, bendir hwd lêxistiye. Paşê rojekê min serê xwe ji wê lîstîka zaroktiyê rakir ku temenê min 50 salî bihurîye"

Hunermendê Kurd dibêje ew li ber radyoya Rewanê û dîwanên dengbêjiyê mezin bûye û xwe wekî şagirtê gelê xwe dibîne. Tevî dîwana apê xwe yî dengbêj Rizayê Fetî her wisa dengbêj Esker Demîrbaş, li van dîwanên dengbêjan ji xwe re wekî zanîngeh dibîne.

**"Huner, ne albûm û klîb e!"**

Ji bilî stranên gelerî û dengbêjiyê gelek stranên Serhedî yên bi xwe afirandine jî hene. Heta niha hunermendê Kurd şeş albûm û çar klîp çêkirine. Albûmên Serhedî ev in; Kûra Çayê (1997), Stranên Gelerî (Xecê-Siyabend, 2000), Şerê Girîdaxê (2004), Rengên Govendê (2007), Dîlan û Gazgaz (2008), Govenda Gasinê (2010)

Serhedî, derheqê çêkirina albûm û klîban de jî wiha pê de diçe, "Huner, ne albûm û klîb e! Weke gotina birêz hunermend Dilovan, 'Perê kê hebe jî xwe re mehê careke albûm û klîban çêdike' Sî sal e ez li Ewropayê hunerê dikim. Şahî, dawet, şev, konsert hwd. Li nivê cîhanê geriyam. Li Ewropayê gund bi gund geriyame. Em di vîdeoyên her malê yên xweş û geş de hene, ev in albûm û klibên heq..."

---

Lîstikvana Kurd Wesen İsmail:

# Lîstikvanî jiyan bixwe ye





CELÎL CEWHER

Lîstikvana Kurd Wesen İsmail ku ji Rojavayê Kurdistanê ye û bi kar û barên sînemayê re mijûl e û stranan jî dibêje. Di temenê xwe yê 24 salî de, zedetirî 7-8 projeyan de cih girtiye. İsmail ku li Stenbolê penaber e wiha diaxive: "Em li Sûriyeyê jî penaber in. Ne nasnameya me heye ne jî mafekî me. Ez ji Qamişlo me. Piştî ji dayîk bûme me berê xwe daye Şamê. Dema şerê Sûriyeyê dest pê kir, em penaberî Tirkiyeyê bûn û heta niha jî em li Stenbolê dijîn."İsmail axaftina xwe wiha berdewan dike: "Penaberî û hejarî tim para gelê Kurd e. Kurd ji jiyanek bextewar her bêpar mane. Derfet hebin ez ê jî di van filman de bi dilekî coş rol bigirim. Her wiha heger derfet hebin ez ê di rola Meyremxan, Eyşeşan û hwd de bileyîzim. Her wiha jiyana keç û qîzên Kurd tahde û zehmetiyên wan bikim film û dengê wan jî bigihînim bîneran."

**"Sînemaya Kurdî kete nav sînemaya cîhanê"**

Wesen İsmail radigihîne ku divê her miletek di asta sînemageriyê de dengê xwe bigihîne cîhanê û wiha berdewam dike: "Dixwazim çand û taybetmendiya gelê xwe bigihînim cîhanê. Sînemaya Kurdî di asteka kêm de ye. Di van salên dawî de lîstikvan û derhênerên Kurd gelek serkeftî ne. Li gorî min sînemaya Kurdî nava sînemaya cîhanê de di astekê de ye, lê pir ne baş e. Bes mirov dikare bibêje ku gihiştiye asteke hebûnê. Di van salên dawî de xwe gihandiye festîvalên navnetewî. Hiner Selîm, Behman Qubadî û ew kesên ku niha nayên bîra min bila li min biborin. Sînemaya Kurdî bi saya xebatên van xebatkarên hêja kete nav sînemaya cîhanê."

**"Bavê min dengbêj e û ez jî distrêm"**

İsmail diyar dike ku wekî profesyonel karê sînemayê dike û bi awayekî amatorî jî strana distre û wiha dirêjiyê dide axaftina xwe: "Heta niha di warê muzîkê de min gavên profesyonelî neavêtine. Lê belê bi sitrana Dadê Dadê nav û deng bum. Dengê bavê min jî pir xweş e. Ew bi dengbêjî distre û ez jî stranên êş û elema Kurdan distrim. Ji alîkariya gelê xwe pir hezdikim. Her şev dia dikim ku zaf dewlemend bibim ku zaftir alîkariya gelê xwe bikim."

**Wêsên İsmail nivîsandina senaryoyê xwe neceribandiye**

Lîstikvana kurd Wêsên İsmail destnîşan dike ku ew tenê lîstikvan e û heta niha jî ji bo nivîsandina senaryoyekê xwe neceribandiye û wiha dibêje: "Heta niha min qet neceribandiye. Lê ez strana dinivisim. Û heta ji min tê jî wan li gel xwe tomar dikim da ku wenda nebin. Ez di fîlma Hiner Selîm de dileyîzim. Film li grava mezin a Stenbolê hat kişandin. Hîna nû kişandina fîlm qediya. Di dema kişandina fîlm de min alîkarî û tecrûbe ji Hiner Selîm wergirt. Min him alîkariya derhiner dikir him jî di fîlm de wek lîstikvan rol digirt."

**"Ez pir ji zarokan hez dikim"**

Wesen İsmail li ser pirsekê dibêje: "Mirov nikare her kesekî bixe heman kefeyê. Lê mixabin di civaka me de gelek tiştên ne xweş rû didin. Lê ev çend salên dawî rewş hinek hatiye guherandin. Jin û zilamên Kurd wekheviyê pesend dikin û wisa tevdigerin. Ez jî di vê mijarê de wekheviyê esas digirim." İsmail ji bo hezkirina zarokan jî wiha dibêje: "Ez dixwazim 12 zarokên min çê bibin. Ji ber ku pir ji zarokan hez dikim."

**"Ez hemi rola dilizim"**

İsmail li ser teklîfên fîlmên erotîk wiha dibêje: "Ez lîstikvaneke sînemayê me. Rola ku ez ê bileyizim helbet biryara mine ezê hilbijêrim. Lê belê heger teklîf û senaryo baş be ezê wê rolê baş bilîzim." Lîstikvana kurd Wêsên İsmail diyar dike ku ew evîndarê kesekî nîn e û ew evîndarê sînema û stranbêjiyê ye. İsmail hez dike êvîndar bibe lê niha tu kesek di jiyana wê de nîn e.

## Di gelek rêzefîlman de cih girtiye

Wêsen İsmail di gelek rêzefîlmên Tirkiyeyê de rol girtiye. Poyraz Karayel, Cesur Yurek, Kirgin Çiçekler, Kördüğüm Jan û çend rêzefîlmên ku tê de rol girtî ne.

Lêbelê ji ber şer û pênaberiyê...

Ji bo xwendina xwe jî İsmail wiha dibêje: "Bi rastî jî min qet ne dixwest ku ez parêzeriyê bixwînim. Tenê bavê min zaf dixwest ez parêzeriyê bixwînim. Min jî ji ber daxwaza bavê xwe beşa hiqûqnasiyê xwend. Lê ji ber şer û pênaberiyê min xwendina parêzeriyê di nîvî de hişt û min koçî Tirkiyeyê kir."

"Dixwazim bavê min xwarinê amade bike"

İsmail di derbarê jiyana xwe ya li malê de jî dibêje ku ew ji çêkirina xwarinan pir hez dike û bi van hevokan dawiyê li gotinên xwe tîne: "Ez gelek xwarinên xweş çêdikim. Pir ji mitbexê hez dikim û pir jî serkeftî me di çêkirina xwarinan de. Lê mixabin pir wextê min nîn e ku ez xwarinê çêkim. Dema dayîka min li malê ji herkesî zaftir dixwazim ku bavê min xwarinê amade bike. Bi rastî jî destê bavê min pir bi tam e.